

دڵشاد سەعید
**چۆن بوو بە میوزیکژەن؟**

9 ◀



ئێزدییەکانی ئەڵمانیا
**سێبوورییان بە چایخانەیەک دێت**

6 ◀


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdawê bêtir dizanin

Deutschland 1,50 Euro | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

Hejmar / Nr. 48 | 8 Hezîran / Juni 2010


**HEVPEYVÎN**

Osman Öcalan dibêje

**Ezê ji bo Kurdên derveyî PKK'ê tevgerekê ava bikim!**

Di rûpela 11'an de

AKP berpirsyariya êrişên ser xwendekarên Kurd red dike:

# Ergenekon berpirsyar e!

Di van mehên dawî de êrîşên ser xwendekarên Kurd li zanîngehên bajarên Tirkan berfirehtir bûne û herî dawî xwendekarê Kurd yê ji Batmanê Şerzan Kurt li bajarê rojavayê Tirkiyê Muglayê bû qurbanê van erîşan. Bi zêdebûna êrîşan hêrsa Kurdên li Bakurê Kurdistanê û Tirkiyê jî mezin bûye û gelek xwedekarên Kurd ji ber zexta li ser xwe mecbûr mane ku xwendina xwe rawestînin.

Di vê navberê de diyar bû kesê ku gule teqandiye xwendekarê Kurd Şerzan Kurt, polîsekî sivîl bûye. Piştî ronîbûna vê yekê saziyên sivîl û rêxistinên mafên mirovan bangî Hikûmeta AKP'ê dikin ku berpirsyariya bûyerê bigre ser xwe û berpirsan seza bike. BDP jî Hikûmeta AKP'ê ji van bûyeran berpirsyar dibîne.

AKP heta niha van tewanbariyan red dike û li ser navê Parlamenterê AKP'ê yê Amedê Îhsan Arslan, Ahmet Bîçer daxuyaniyek da Rûdawê û anî ziman ku destê Ergenekon û "dewleta kûr" di van bûyeran de heye û armanca wan têkbirina pêvajoya "vebûna demokratîk" û derxistina şerekî di navbera Tirk û Kurdan e. ▶2



(Wêne: Diha)

**Şerzan di encama guleya polîsekî sivîl de jiyana xwe ji dest da**

*Di pêwendiyên dîplomatîk yên navbera Kurdistan û Tirkiyê de*

# Serdema Qeşayê qediya

▶2 / 14



(Wêne: Diha)

**Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan li Enqerê hevdîtnek 2 demjimêrî li dar xistin**

PYDKS (Yekîtî):

## Hevkariya li gel Îsraîlê ji bo me Hêla Sor e

Piştî bûyera keştiyên Tirkiyê li pêş beravên Îsraîlê, gelek aliyên Kurdan jî nerîna xwe belav kirin. Di nav wan de Sekreterê Partiya Yekîtiya Demokrat a Kurd li Sûriyê (Yekîtî), Îsmail Umer jî hebû. Umer di hevpeyvîneke li gel Rûdawê de anî ziman ku ew Îsraîl dijminê xwe dibînin û hevkariya li gel Îsraîl ji bo wan "Hêla Sor" e.

Serokê Komela Rojavayê Kurdistanê, Cewad Mela jî nerîna xwe derbarê peywendiya Kurd û Îsraîlê anîn ziman û bûyera keştiyan weke "şanoyek" ji bo veşartina pêwendiyên Tirkiye û Îsraîlê bi nav kir. Mela pirsî di demekê de ku pêwendiyên hemû dewletên Ereban bi Îsraîlê re hene, gelo çima Kurd Îsraîlê wek dijminê xwe bibînin? ▶5

**Zanyarên Kurd**

Mamosteyekî Kurd sedema kulbûna pûka diranan vedît ▶6

**DJ'ya zarok**

Liyan a 6-salî dixwaze di mal de her tişt bi Kurdî be ▶7

**"Çel Awaz" derket**

Alî Baran TRT-6 giring dibîne lê naxwaze bibe mêvanê wê ▶9

**Seks û Ol**

Ciwan dixwazin di xutbeyên mizgeftan de seks bibe mijar ▶10












# Êrîşên nîjadperestî xwendekarên Kurd nîgeran dike

**Firat Kelehkî** Hewlêr

Herî dawî xwendekarê Kurd Şerzan Kurt bi guleya polîsekî hat kuştin. Parlamenterekî AKP'ê Ergenekonê berpirsyar dibîne

Di van herdu mehên dawî de li zanîngehên çendîn bajarên Tirkiyê li dijî xwendekarên Kurd gelek êrîş pêk hatin û ji ber van êrîşan gelek xwendekar neçar man dest ji xwendina xwe berdin. Herî dawî jî li bajarê Mugla xwendekarên Kurd ketin ber êrîşa nîjadperestên Tirk û xwendekarek bi navê Şerzan Kurt ji aliyê polisekî ve hat birîndarkirin. Piştî çend rojan li nexweşxanê Şerzan jiyana xwe ji dest da û ev yek bû cihê nerazîbûneke zêde ya gelê Kurd û saziyên sivîl.

Li gor Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) berpirsyarê van êrîşan Hikûmeta AKP'ê û dewlet bi xwe ye. AKP jî dibêje ku destê Ergenekonê di van bûyeran de heye û dixwazin pêvajoya 'vebûna demokratîk' têk bidin. Bi baweriya saziyên sivîl jî, êrîşkar hêza xwe ji navend û saziyên fermî yên dewletê werdigrin û hinek caran nîjadperestên Tirk û polîs bihev re êrîşî xwendekarên Kurd dikin.

## 'Ji êrîşên ser xwendekarên Kurd Hikûmeta AKP'ê berpirs e'

Di vê derbarê de BDP'ê yê Batmanê Bengî Yildiz ji bo Rûdawê axifî û ji êrîşên ser xwendevanên Kurd damûdezgehên dewletê berpirsyar dît: "Ev êrîş ne tenê karê partiyeke muhafezekar wek mînak MHP'ê ye. Ev karê dewlet û hikûmetê ye. Ji ber xwendekarên Kurd bi deng û reng û nav û ziman mafên xwe dixwazin ev bûyer derdikevin û nîjadperest êrîşî wan dikin."

Wezîrê Navxwe yê Tirkiyê Beşîr Atalay jî di sersaxiya Şerzan Kurt de li Batmanê ragehand ku polîsek û hinek kiryarên bûyerê hatine girtin û heta dawî wê li ser bûyerê rawestin. Yildiz daxuyaniya Atalay rast nabîne û dibêje: "Birêz Atalay ji bo piştgiriya pakêta destûrê û referandûmê hat Batmanê, ne ji bo çareserkirina pirsgirêkê. Ew baş dizane xwendekarê ku hat kuştin ji Batmanê bû. Dema hat bajêr ger neçe şînê, wê nikaribe piştgiriyê jî bixwaze, lewra çû. Hemû dezgehên ewlekariyê di jêr kontrola wî de ne û ger bixwazin dikarin çareser bikin."

## 'Mebesta van êrîşan derxistina şerê Kurd û Tirk e'

Li ser navê Parlamenterê AKP'ê yê Amedê Îhsan Arslan, Ahmet Bîçer daxuyaniyek da Rûdawê û anî ziman ku destê Ergenekon û dewleta kûr di van bûyeran de heye û wiha pêde çû: "Ev karê Ergenekonê ye, nêrîna AKP'ê wiha ye. Bi zanebûn van tiştan dikin, her dema ku pêşketinek çêbibe, hinek pêngav tên avêtin, bûyereke wiha diqewime û mebesta wan têkdana pêvajoya 'vebûna demokratîk' û referandûmê ye. Dixwazin şerê Kurd û Tirk derxînin. Lewra xwendekar ji xwe re kirin armanc, ji bo ku li zanîngehan alozî derkevin û rojeva Tirkiyê tevlîhev bibe."

Bîçer bibîr anî ku yê gule berdaye xwendekar Şerzan Kurt polîsekî sivîl bûye û wiha axifî: "Bi salan e li Mugla ti pirsgirêk di navbera xwendekarên Kurd û Tirk de derneketine, lê polîsek radibe guleyekê berdide û bûyer derdikeve. Kes û grubên vebûnê demokratîk û çareserkirina pirsa Kurd naxwazin, hewl didin ji aliyekî ve Tirkiyê bixin nav aloziyê û pêvajoyê li gor berjewendiyên xwe bikarbînin. Bê guman wê partiyên opozîsyon me tawanbar bikin lê ev karê Ergenekonê û hêzên tarîperest e. Dixwazin Kurd û Tirkan bînin beramberî hev û ne tiştekî din." Bi baweriya Bengî Yildiz, Hikûmeta AKP'ê dixwaze xwe ji bûyerê bidize û xwe paqij pêşan bide: "Ji MÎT'ê bigre heta hemû hêzên ewlekariyê di jêr kontrola Wezîrê Navxwe de ne, ger nikaribin hêzên xwe kontrol bikin, çi dikin?"

Li gor Serokê Enstîtûya Kurdî ya Stenbolê Samî Tan, herçiqas ji aliyê saziyên sivîl ve daxuyanî û nerazîbûn bên pêşandan jî, lê têr nake û mijar zêdetir siyasî ye û rêxistinên siyasî û saziyên fermî jî zêde bala xwe nadin mijarê û paşguh dixin: "Bi taybetî li wan bajarên ku jimara Kurdan lê kêm e, xwendekarên Kurd rastî êrîşên nîjadperestên Tirk tên. Bê guman ev êrîşkar hêza xwe ji navend û hêzên dewletê werdigrin. Hinek caran polîs û faşîst bi hev re êrîşî xwendekarên Kurd dikin. Ger piştgiriyeke wan faşîstan nebe, bawer nakim biwêrin êrîşî Kurdan bikin."

## 'Dema kêr giha hestî wê zarokên me jî wan bikujin'

Li ser wêya ger ev êrîşên han berdewam bikin, gelo li zanîngehên bajarên Kurdistanê jî metirsî nîne xwendekarên Kurd êrîşî Tirkan bikin, Bengî Yildiz got: "Ew dizanin Kurd mêvanperwer in û di şer û nexweşiyên herî dijwar de jî Kurdan neyartiya gelê Tirk nekirine, berxwedanên wan her li dijî sîstem û dewletê bûne. Îstîxbarata Tirkiyê jî vêna dizane. Lê her tiştek astekî wê heye, ger ev bûyer berdewam bikin û kêr bighe hestî wê zaroyên Kurdan jî wan bikujin, wate ger zarokên me li Îzmîr, Mugla û Edenê nikaribin bixwînin, divê zarokên wan jî nikaribin li zanîngehên bajarên Kurdistanê bixwînin. Siyasetmedarên Tirk daxuyaniyên handanê didin, lê hê siyasetmedarên Kurd negotine dema hûn kuştin heyfa xwe hilînin. Ji ber em vê şaş dibînin û heta rêyên aştiyê hene em naxwazin ên din bikar bînin.

# Serdema Qeşayê qediya

**Rûdaw –** Serokê Herêma Kurdistanê ku 2'ê Hezîranê bi vexwendineke fermî ya Hikûmeta Tirkiyê gihişt Enqerê, li gel Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan, Wezîrê Derve Ahmet Davutoglu û dûre jî ligel karsazên Tirk rûnişt. Roja yekşemê jî Mesûd Barzanî bi Serkomarê Tirkiyê Abdullah Gul re rûnişt. Çavdêrên siyasî pêşbînî dikin ku ev seredan bibe destpêka peywendiyên germ ên siyasî û aborî di navbera Tirkiyê û Herêma Kurdistanê de.

Wezîrê Derve Davutoglu piştî civîna wî ligel Barzanî eşkere kir ku di demeke kurt de û piştî pêkanîna hikûmeta nû ya Îraqê wê Serokkomarê Tirkiyê Abdullah Gul û Serokwezîr Recep Tayyip Erdogan seredana Bexda û Hewlêrê bikin. Di ware aborî û bazirganî de, di van civînan de behsa hinek mijarên girîng hat kirin ku cîbicîkirina wan wê guherîneke mezin di têkiliyên bazirganî yên herdu aliyan de pêk bîne. Di nav wan mijaran de vekirina şûbeyên du bankeyên Tirkî li Herêma Kurdistanê, avakirina herêmek bazirganiyê ya azad li ser sînor, xetek trênê û vekirina du deriyên gumrikê yên nû hene.

## "Berî çend salan behskirina seredaneke bi vî rengî xeyal bû"

Piştî salên dirêj ji nakokiyan, seredana Mesûd Barzanî bo Enqerê wek Serokê Herêma Kurdistanê - ku yekem seredana bi vî awayî ya berpirsekî herî mezin ê Herêma Kurdistanê ye - nîşana pêşveçûneke siyasî ya girîng e ku li jêr sîbera siyaseta vebûna Tirkiyê ya bi rûyê cîranên wê de birêve diçe. Çavdêrên siyasî vê seredanê wiha şirove dikin ku nîşana fetlînokeke mezin e di siyaseta derve ya Tirkiyê de. Profesorê siyasî yê Amerîkî li peymangeha Carnegie ya aştiya navdewletî, Henry Barky ji bo Reuters ragihand: "Berî çend salan, behskirina seredaneke bi vî rengî xeyal bû, ev dide xuyakirin ku siyaseta Tirkiyê derbarê Kurdistana Îraqê çiqasî guheriye." Navbirî wiha dirêjî da axaftina xwe: "Tirkiyê têgihiştiye ku Kurdên Îraqê hevpeymanekî xwezayî yên wan e û Kurdan jî bo piştîvaniya bazirganî û siyasî pişta xwe bi Enqere ve girêdane."

Pisporên siyaseta navxwe ya Tirkiyê jî didin zanîn ku domandina siyaseta înkarkirina Kurdan zirarê dide Tirkiyê bi xwe. Profesorê zanistên siyasî li zanîngeha Stenbolê Şahîn Aplay dibêje: "Baweriya hevbeş di navbera Tirkiyê û Kurdistanê de kilîta aramiya navçê ye. Sedemê serekî yê nêzîkbûna Kurdan ji Tirkiyê, biryara Amerîka ya kişandina hêzên xwe ji Îraqê ye."

Piştî hevdîtina wî ligel Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, Hevserokê BDP'ê Selahattîn Demîrtaş ragihand ku seredana Serokê Herêma Kurdistanê bo Tirkiyê seredaneke girîng e û got: "Em kêfxweş in ku Tirkiyê peywendiyên xwe yên kultûrî, aborî û civakî ligel welatên cîran bihêz dike." Demîrtaş herwiha hêvî kir ku têkiliyên di navbera Tirkiyê û Herêma Kurdistanê de bi awayekî baş bipêş bikevin û got: "Pêwîst e ev peywendî di xizmeta aştî û demokrasiyê de bin."

Piştî seredana çend rojî, Mesûd Barzanî û şanda li gel wî, ji bo seredana çend welatên Ewrûpa ku di nav wan de Fransa û Almanya jî hene, yekşema borî ji Tirkiyê berbi Ewrûpayê bi rê ket. ▶14




**Rûdaw**
Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî
azadKurdi@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

Endamê Polîtburoya PDK'ê, Mehmûd Mihemed:

# Tirkiye rastiya Kurdistanê û serokê wê dipejirîne



Endamê Polîtburoya PDK'ê, Mehmûd Mihemed

**Köln (Rûdaw)** - *Endamê Polîtburoya PDK'ê, Mehmûd Mihemed, di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de dibêje, pejirandina rastiya destûrî ya Herêma Kurdistanê û serokê wê ji aliyê Tirkiyê ve, encama rêbaza nû ye ku ev demeke li Tirkiyê dirust bûye, bi taybet derbarê pirsgirêkên wê yên navxweyî û cîranên wê, herwiha dibêje Tirkiye jî dixwaze bi rêya dirustkirina peywendiyan ligel Herêma Kurdistanê berjewendiyên xwe yên li Îraqê biparêze.*

**Rûdaw: Serdana vê carê ya Mesûd Barzanî wek Serokê Herêma Kurdistanê bo Tirkiyê, garantiyeke herêmî bo dahatûya Herêma Kurdistanê dirust dike?**

Mehmûd Mihemed: Ev demeke guhertinên balkêş li Tirkiyê tên dîtin û xwendineke nû bo awayê karkirina ligel pirsgirêkên Tirkiyê yên hundirîn û awayê karkirina ligel cîranên wê dirust bûye. Guhertina siyasetên wê beramber Ermenistan, Yûnanistan û Herêma Kurdistanê, encama xwendineke nû ya AK Partî ye. Heta demên ku Tirkiye negihabû wê baweriyê ku peywendiyên dostaniyê ligel welatên derdorê bi awayekî aştiyane dirust bike, zerereke mezin gihandiye xwe.

Gelek berjewendiyên hevbeş di navbera Tirkiyê û Herêma Kurdisatanê de hene, bi taybet yên aborî. Herêma Kurdistanê û serokê wê jî rastiyeke destûrî ne. Ev karê niha yê Tirkiyê karekî dirust e û ev guhertin di berjewendiya wê û navçeyê de ne. Her vebûnek ser Kurdistanê û pejirandina rastiya Kurdistanê giring e, loma ev peywendî wê bihêlin rewşa Kurdistanê aram bimîne û bandorê li ser proseya siyasî ya Îraqê jî dike û giraniyeke zêde bide Kurdan li Îraqê. Têkiliya vê yekê bi giraniya serok Barzanî, tevgera rizgarîxwaza Kurd û tesîra wan li ser proseya siyasî ya Îraqê heye. Tirkiye dixwaze bi vî awayî berjewendiyên xwe yên li Îraqê biparêze.

**Di dema serdanê de, topbarana Îranê li ser sînor pir tund bû, gelo ev topbarankirina serdanê bi xwe bû?**

Em nîgeran in bi vê topbaranê, peywendiyên me ligel Komara Îslamî dirêj û dîrokî ne. Îranê di gelek qonaxên nexweş de hevkariya xelkê Kurdistanê kiriye. Topbaran bandorê li peywendiyên Herêma Kurdistanê ligel Îranê dike, herwiha bandoreke xerab dike ser raya xelkê Kurdistanê derbarê Komara Îslamî. Hêviya me ewe ku Îran topbaranan rawestîne, ger hinek kesên din li sînoran wan aciz dikin, gunehê xelkê me tune ku ew bên koçber kirin. Peywendiya topbaranan bi têkiliyên me yên ligel Tirkiyê tune, ji ber ev têkilî ne tiştekî nû ye wek çawa têkiliyên me ligel Îranê kevin in. Îran berî Tirkiye rastiya Herêma Kurdistanê bi awayekî fermî pejirandiye.

**Pir behsa peymana stratejîk a di navbera YNK û PDK'ê de tê kirin, gelo wê kongreya YNK'ê gerimtir bike ser vê peymanê yan wê dilsar bike?**

Me peymana stratejîk vê dawiyê weşand, yek ji bendên vê peymanê ewe ku divê di hundirê kongre û konferansan de ew bê parastin. Mayîn û parastina vê peymanê pêwîstiyeke. Li gor rewşa niha ya Îraqê, hevgirtina PDK û YNK'ê jî pêwîstiyeke. Ev peyman piştî lêkolîneke dûr û dirêj hatiye kirin. Hevgirtina me beşdariyeke berfirehtir dide Kurdan li Bexda.

**Di peymanê de hatiye ku divê heta dawiya sala 2007'an wezaretên Darayî, Pêşmerge, Hundir û Asayiş bibin yek, serokatiyên herdu aliyan ev bend cîbicî kirine?**

Beşeke van bendan hatine cîbicîkirin û beşek jî mixabin hê nehatine bicîh kirin. Wezaret bûne yek, lê dezgehên ewlekariyê mane. Hemû bendên peymanê wê bên cîbicî kirin.

## Xeta Hewlêr-Enqereyê

Ahmet DERE

Di van rojên ku Tirkiye di nava qirecirekê hundirîn û derve de derbas dibe, serdana birêz Barzanî a ji bo Enqereyê pêk hat. Bê guman dema vê serdanê ji mêj ve diyar bûye, ti pêwendiyeke wê bi rewşa qirecire ya Tirkiyeyê re tine. Halê aktûel yê vî welatî çawa dibe bila bibe, ev çûyîna serokê Herêma Kurdistanê di cewherê xwe de girîngiyeke mezin diparêze. Ji vê demê bi şûn de, ne Dewleta Tirk û ne jî Herêma Başûrê Kurdistanê nikarin bi rêbazên kevnar ên dema borî siyasetê bikin. Lewre ez dibêm, di dîroka Kurd û Tirkan de merheleyekê nû dest pê kiriye.

Di hemû têkiliyên navdewletî de berjewendî esas têne girtin. Rayedarên ti dewletê bi hestan tevnagerin û berpirsyartiyên xwe pêknaynin. Dewleta Tirk ji demeke dirêj û vir ve, bi taybetî bi hawldanên Wezîrê Karê Derve Ahmet Davutoglu, dixwaze li Herêma Kurdistanê bandora xwe çê bike û li wê derê bibe xwediyê sozê. Lê belê, heya niha têkilî tim di asta jêrîn de mabûn, Dewleta Tirk nedixwast vê herêma Kurdistanê weke hêzekê nas bike. Hemû armanca vê dewletê li ser esasê bikaranîna Kurdan li dijî Kurdan bû. Hê jî li Tirkiyeyê heman zihniyet di nava derdorên leşkerî û nijadperestan de heye.

Dewran guherî ye, êdî ne Dewleta Tirk dikare weke dema borî siyasetê bimeşîne, ne jî Kurd li dijî Kurdan têne bikaranîn. Ji ber vê yekê, di xeta Hewlêr-Enqereyê de guherînên bingehîn çê dibin. Ez wisa dibînim ku di navbera Herêma Kurdistanê û Tirkiyeyê de hejmarên berjewendiyên demdirêj û dorfireh têne çêkirin. Ev hejmarana tenê bi Herêma Başûrê Kurdistanê ve bisînor nîn in, Bakurê Kurdistanê jî xwediyê cihekê girîng e. Pêwendiyên Başûr û Bakur ji hemû deman zêdetir ketine nava hev û her wiha hevdu dewlemendtir dikin.

Her ku diçe li Herêma Başûrê Kurdistanê stabîlîzasyona siyasî, aborî û her wiha ya ewlekariyê pêş dikeve. Ne tenê çavên rayedar û karmendên Tirkiyeyê kişiyane ser vê herêmê, her wiha li pir deverên din ên cîhanê jî baleke mezin li ser vê herêmê ye. Di nava çend salên pêş de, rewşa siyasî, civakî û aboriya vê herêmê wê di guherînekê girîng de derbas bibin. Şertên objektîf û yên sûbjektîf guherînan ferz dike. Berxwedana li dijî van şertan feydeyê nagihîne ti kesî.

Digel daxwaza Dewleta Tirk, ez bawer nakim ku rayedarên Başûrê Kurdistanê li gorî berjewendiyên Tirkiyeyê tevbigerin û li dijî PKK'ê werin bikaranîn. Kurdan ji şerê "birakujiyê" pir kişandine, divê ew rûpela dîrokê hatibe girtin û careke din neyê vekirin. Bi taybetî nêzîkatiya birêz Mesûd Barzanî a di vî warî de tê zanîn, lewre ez nafikirim ku wê xeterî bikevin rojevê.

NOT: Birêz Ahmet Dere wê ji niha û şûn de her du hefteyan carekê bi xwendevanên Rûdawê re be.
(Redaksiyona Rudawê)

# Li Artûklûyê kursên wanebêjiya Kurdî dest pê dikin

Li Zanîngeha Artûklûyê, di çarçoweya Enstituya Zimanên Dijîn de, di navbera 29'ê Pûşber- 23'ê Îlonê de wê "Kursa Gîhandina Wanebêjî ya Kurdî (Kurmancî- Kirmanckî) " ya bi sertifîka bê vekirin. Di derbarê mijarê de Selîm Temo ji Rûdawê re ragihand, ev serê salekê ye li ser avakirina beşa Kurdî dixebite û sê meh bûn ku li ser mijara "Hîndekariya Kurdî" xebitiye û beriya mehekê jî ev xebat ji senatoyê derbas bûye. Temo wiha berdewam kir: "Armanca me ew bû ku em hîndekaran perwerde bikin. Zanîngehên wek Mûş, Çewlik, Artûklu û Hekariyê, li ser çapemeniyê, yan bi awayekî fermî-nefermî gotin ku em dixwazin di sala bê (2010-2011) de Kurdî wek dersa bijarte bidin. Vêca ji bo vê yekê hîndekar divên. Her çiqas Îstanbûl Bîlgî û Dêrsim Kurdî wek dersa bijarte bidin jî, mamosteyên xwe ji derveyî zanîngehê hilbijartine. Yanê wan wek kadro negirtine. Me jî got ku em dikarin hîndekaran perwerde bikin û bişînin zanîngehan."

Selîm Temo bal kişand ser giringiya hîndekaryê û got, heke tiştekî wiha bibe bi ya min wê tiştekî dîrokî be û lê zêde kir ku,em wek Zanîngeha Artuklu ya Mêrdînê dikarin di van mijaran de bibin navend. Di derbarê gelo dexla dewletê di vî karî de heye yan tune ye de jî got ku, ez nizanim, me bi xwe dest pê kir.

Di derbarê naveroka dersên qursê de jî wiha da zanîn: ''Em ê hemû binbeşên ziman û edebiyata Kurdî bidin. Ji edebiyata klasîk heya ya nûjen, ji ya devkî heya huner û çanda Kurdî, ji zaravayan heya vegotina bi devkî û nivîskî.

Niha em şeş kes in. Em ê qursê li ser Kurmancî û Kirmançkî ava bikin. Têkiliya di nav zaravayan de, danûstandina Kurdî û zimanên din jî mijarên me ne.''

Derbarê mijarê de, di malpera Zanîngeha Artuklu ya Mêrdînê de tê diyarkirin, ji bo pêwendiya zêde, wextê serîlêdanê hatiye dirêjkirin. Bi giştî wê 50 berandem di çarçoweya qursê de bên girtin.

# “Pêdivî bi ‘Rêveberiya Herêmî’ heye”

> “Dadwerî li pêşiya çareseriya pirgirêka Kurd asteng e. Xitimîna rêya siyasetê li pêşiya çareseriyê asteng e.”



**Prof. Dr. Mîthat Sancar**

**Enqere (Rûdaw) –** Di derbarê pakêta guhertina Destûra Bingehîn de me pirsên xwe ji profesorê hiqûqê yê Zanîngeha Enqerê, ji Mîthat Sancar kirin. Sancar da zanîn ji bo ku pirgirêka Kurd çareser bibe dive di Destûra Bingehîn de guhertinên ku wê astengiyên li pêşiya perwedehiya zimanê zikmakî rake û rê li ber rêveberiyên herêmî veke, bên kirin.

**Pakêta guhertina Destûra Bingehîn ya AKP’ê wê ji bo demokratîkbûna Tirkiyê alîkar be?**

Belê wê alîkariyekê bike. Ev pakêt ji bo berjewendiyên AKP ye jî. AKP berjewendiyên xwe jî fikiriye û ev pakêt amade kiriye, lê di hundirê vê pakêtê de sê xalên girîng jî hene. Ew xal jî wê ji bo demokratikbûna Tirkiyê alîkar bin.

**Ev kîjan xal in?**

Xala ku binyata Lijneya Bilind ya Dadwer û Dozgeran (HSYK) diguhere. Xala ku girtina partiyan dijwar dike û xala ku binyata Dadgeha Makzagonê ji nû ve saz dike. Xalên din jî girîng in lê bi navgîna wan wê pêşketinên girîng pêk neyên. Bi taybetî jî xala têkildarî HSYK û xala 8’an ya di derbarê girtina partiyan de girîng in.

**Xala 8’an ket!**

Jixwe nîqaş jî ji wir derketin. Ev xal wê alîkariyek ji bo demokratîkbûna Tirkiyê bikira. Ev ne xalên wiha ne ku wê hemû pirsgirêkan çareser bikin. Ev xal ne tenê ji bo berjewendiyên AKP’ê ne, helbet ronî ye ku hesabên wê jî hene. Ev jî asa ye.

**Ji vê pakêtê armanca sereke mîsogerkirina desthilatdariya AKP ye?**

Ji xwe rewşek ku ji bo desthiltdariya xwe mîsoger bike asa ye. Mînak di xala 8’an ya têkildarî girtina partiyan de dixwazin bergiriyê bistînin da ku partiya wan neyê girtin. Ev jî armancek rewa ye.

**Xala 8’an girtina partiyan ji holê ranake lê destûrê dide Meclîsê...**

Ev jî pir girîng e. Rewşek ku Serdozgerek li gorî kêfa xwe û kengî dilê wî xwest dozê veke heye.

### “Pergala nû dibe ku sedî sed ne pergalek bê kêmasî be lê dema ku em bala xwe didin standartên Yekitiya Ewrûpayê, tê wateya pêşketinek mezin”

**Ev guhertin dest li giyana Destûra Bingehîn ya 80’yî dide?**

Bi ya min bi taybetî di mijara HSYK’ê de dest lê dide. Di guhertinên ku beriya vê de hatibûn kirin, xalên ku rasterast dest li lijneyan bidin nîn bûn. Di derbarê Lijneya Mîllî ya Ewlekariyê de sazkirinek pêk anîbûn. HSYK yek ji dezgeha herî girîng ya vê pergalê ye. Û pergala nû dibe ku sedî sed ne pergalek bê kêmasî be lê dema ku em bala xwe didin standartên Yekitiya Ewrûpayê, tê wateya pêşketinek mezin. Pergalên niha gelek pêşketî ne, pir baştir in.

**Hûn helwesta siyaseta Kurd ya li ser pakêtê çawa dinirxînin?**

Qels dibînim. Çewtî û kêmasiyên wan hene. Tiştekî çewt e ku mirov hemû nîqaşan li ser nêta AKP’ê bike û helwesta xwe li gorî vê diyar bike. Li Tirkiyê eniya CHP û MHP’ê jixwe vê dike. Ev argûmana herî mezin ya netewperestane. Her tiştî wek komplaya AKP’ê derpêş dikin. Em zanin ku kesên dixwazin siyaseta demokratîk bikin, kesên ku bi vê xweziyê derketine holê, nabe ku polîtîka AKP bikin mahne û ji pêkanîna polîtîka xwe birevin.

BDP’ê wiha kir. Hênceta ”em bi dû AKP’ê nakevin” nîşan dan. Û di sazkirinan de jî tiştekî wiha nîn bû, ya rastir dikarîbû piştgiriyê bide xalên ku dixwestin û dema ku piştgirî bida jî dikarîbû rexneyên xwe li AKP’ê bidomanda û bi ser de jî dikarîbû AKP’ê teşhîr jî bikira.

Bi ya min ku di mijara pakêtê de helwestek polîtîktir, bi bandortir nîşan bidaya, li şûna ku AKP’ê bi hêz bikin, berevajî vê, li nav demokratan dikaribûn AKP bixin rewşek dijwar.

### “Makzagonek nû jî nikare pirsigrêka Kurd di rojekê de çareser bike”

**Ev pakêt wê ji çareseriya pirsgirêka Kurd re alîkar be?**

Rasterast alîkariyê nake. Lê ez vê bibêjim ku demokratîkbûna Tirkiyê bi her awayî wê rê li ber bibandorbûna siyaseta Kurd veke. Ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd jî wê bingehê xurtir bike. Dadwerî li pêşiya çareseriya pirgirêka Kurd asteng e. Xitimîna rêya siyasetê li pêşiya çareseriyê asteng e. Ku xala 8’an derkeve û girtina partiyên wek BDP dijwar bibe, siyaset wê bihêztir bibe.

Di mijara HSYK de jî heman tişt heye. Mijara zarokên keviravêj beriya niha ne mijarek qanûnî bû. Şiroveyên dadgeran di vir de pir girîng in. Ji bo vê jî dive em ti caran li benda sazkirinek ku wê pirsgirêka Kurd bi carekê re, bi temamî çareser bike nemînin. Makzagonek nû jî nikare pirsgirêka Kurd di rojekê de çareser bike. Çareseriya pirsgirêka Kurd pêvojeyek berfireh e, dirêj e û ev jî gavek ji vê pêvajoyê ye. Nenirxandina wê gavê çewtiyek e.

**Ji bo çareseriya pirgirêka Kurd dive kîjan xal bên guhertin? Yan dive makzagon bi tevahî bê guhertin?**

Na. Ji bo çareseriya pirsgirêkê pêdivî ne bi guhertina vê xalê yan jî xalek din, lê bi rewşek ku ji nû ve sazkirina Destûra Bingehîn, pêdivî bi sazkirinên ku wê rê li ber vekirina mafê perwerdehiya bi zimanê zikmakî veke, astengiyên li pêşiya wê ji holê rake û rewatiya zagonî bidê wê, heye. Pêdivî bi sazkirinên ku wê rê li ber sepandina projeyên “Rêveberiyên Herêmî” veke heye. Ev dikare modela ku wek “Xweseriya Demokratîk” tê bi nav kirin jî be. Ev hemû di çarçoveya proje û programekê de dikarin bên kirin. Wî çaxî jî pirsgirêka Kurd wê sedî sed nehatibe çareser kirin, lê ji bo çaraseriyê ev wê bibe gavek girîng.

Ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd teklîf û programên me wekî din jî hebûn. Lê ev her du mijar mijarên herî krîtîk in.

### “Astenga herî mezin Dadgeha Makzagonê ye”

**Serê kêliyekê bi guhertina çend xalan wê pirsgirêk çareser bibe?**

Pergal nayê guhertin, lê dema ku tu hewl bide makzagonek nû çêbike, astengiya herî mezin ya ku wê rê li ber te bigire Dadgeha Makzagonê ye. Hetanî ku tu Dadgeha Makzagonê ji astengbûyinê dernexîne, tu nikare makzagona nû amade bike. Ku di vê pakêtê de xala mafê perwerdehiya zimanê zikmakî hebe, Dadgeha Makzagonê wê pêşî wê betal bike. Ji bo vê jî ji bo guhertinek berfireh pêk bê, dive astengiyên li pêşiya wê ji holê bên rakirin. Yek ji armancên AKP’ê ji vê pakêtê jî ev e. Ku tu niha xalek ku têkildarî Rêveberiyên Herêmî be têxî pakêtê, Dadgeha Makzagonê wê vê xalê dijî rêgeza yekparetiya ku nayê parvekirin bibîne û wê vê xalê betal bike.

Hetanî ev asteng hebin em ê çawa gavekê bavêjin? Ji bo vê jî ev gavek e.

**Hevpeyvîn: Sengul Ogur**

**Prof. Dr. Mîthat Sancar** *ji Nisêbînê ye, bi eslê xwe Ereb e. Di Fakulteya Hiqûqê ya Zanîngeha Enqerê de Profesorê Hiqûqa Cemawerî ye. Sancar bi taybetî li ser teoriya destûra bingehîn, Zayîna Tirkiyeya Modern, dewleta hiquqî û ma- fên mirovan dixebite.*

# "Îsraîl dijminê me ye"

Serokê Komela Rojavayê Kurdistanê Cewad Mela jî dibêje: "Ger Îsraîl ne dostê Kurdan be jî, lê ne dijminê wan e jî."



Îsmail Umer

Besam Mistefa

Bi baweriya Sekreterê Partiya Yekîtiya Demokrat a Kurd li Sûriyê (Yekîtî) Îsmail Umer, bi qasî ku dewleta Îsraîl dijminê Ereban e, hewqasî jî dijminê Kurda ye û "nabe Kurd bi ti awayan têkiliyan li gel bikin." Serokê Komela Rojavayê Kurdistanê Cewad Mela jî dibêje: "Ger Îsraîl ne dostê Kurdan be jî, lê ne dijminê wan e jî." Cewad Mela herwiha girêdana peywendiyan li gel Îsraîlê wek karekî asayî dibîne, ji ber ku peywendiyên Ereban jî li gel Îsraîlê hene.

Êrîşa ser 6 keştiyên ku bi armanca têkbirina dorpêça Xezza ji aliyê artêşa Îsraîlê ve ji bênderên Tirkiyê bi rê ketibûn û di encamê de 17 kesan jiyana xwe ji dest dabûn û 50 kes birîndar bûbûn, bala tevahiya cîhanê kişand û li ser vê bûyerê siyastevanên Kurd jî daxuyanî belav kirin. Îsmail Umer di daxuyaniyek ji bo rojnameyên Erebî, êrîşa Îsraîl prostesto kir û got ku "Îsraîl dijminê me ye." Umer ji bo Rûdawê jî behsa vê mijarê kir û ragihand: "Em kiryara Îsraîlê şermezar dikin ku di ava navdewletî de û dûrî sînorên xwe êrîş bir ser kesên sivîl û gelek ji wan kuştin û hinek jî birîndar kirin." Navbirî herwiha domand: "Wek welatiyekî Sûriyê ez Îsraîl dijmin dibînim. Kurd beşek ji xelkê Sûriyê ne û Dewleta Îsraîlê parçeyek ji xaka Sûriyê "Girê Colan" dagîr kiriye. Loma bi qasî ku "Colan" xaka Ereban e, herwiha ya Kurdên Sûriyê ye jî."

## "Têkiliyên li gel Îsraîlê hêla sor e"

Navbirî diyar dike ku helwesta wan ne ji bo razîkirina Hikûmeta Sûriyê ye: "Em opozîsyonek eşkere ne, lê rêza hestên xelkê Sûriyê û Filistînê digirin. Em dijî Hemas in jî, lê helwêsta me însanî ye." Umer daxuyand ku ew ne amade ne ti peywendiyan li gel Îsraîlê dirust bikin: "Hinek alî îdîa dikin ku têkiliyên "Daxuyaniya Şamê" li gel Îsraîlê hene, lê li gor me dirustkirina têkiliyên siyasî, darayî û leşkerî li gel Îsraîlê hêla sor e, ji ber ku Îsraîl xaka Sûriyê dagir kiriye. Armanca van aliyan ew e ku xelkê Sûriyê ji "Daxuyaniya Şamê" dûr bixin."

## Îsraîl ne dostê Kurdan e, lê belê ne dijmin e jî, loma nabe Kurd wek dijmin berê xwe bidin Îsraîl

Îsmail Umer ku partiya wî endamê "Daxuyaniya Şamê" ye, ku ji hejmarek hêzên Kurd û Ereb ên opozîsyonê pêk tê, wiha berdewan kir: "Em peywendiyên siyasî li gel rêxistinên mafên mirovan û civaka sivîl ên cîhanê çêdikin, lê têkiliyên me yên leşkerî û darayî li gel dewletên derve nînin û em alîkariyê ji ti aliyan wernagirin. Karê opozîsyonê ne rûxandina rêjîmê ye. Em dixwazin kongreyek Neteweyî-Sûrî giştî bê lidarxistin û qirîza rêjîm û welatê xwe bi dawî bînin."

Cewad Mela yê Serokê Komela Rojavayê Kurdistanê ku di heman demê de Serokê Kongreya Niştîmanî ya Kurdistanî ye, ku sala 1985'an li Brîtanya hat damezrandin û daxwaza serxwebûna her çar parçên Kurdistanê dike, di daxuyaniyekê de ji bo Rûdawê tekez kir ku "Îsraîl ne dostê Kurdan e, lê belê ne dijmin e jî, loma nabe Kurd wek dijmin berê xwe bidin Îsraîl."

Cewad Mela got tenê her çar dewletên ku Kurdistan dagir kirine dikarin wek dijminên Kurdan bên jimartin: "Em hemû dewletên cîhanê wek dostên xwe dibînin, ji xeynî her çar dewletên ku Kurdistan dagîr kirine, ji ber ku van dewletan xaka me dizîne û sitem û zordarî li me kirine. Em wan wek dijmin dibînin. Pêwîst e Kurd dewletên din, di nav wan de Îsraîl, wek dost bibînin." Mela nîgeraniya xwe pêşan da û berpirsên Îsraîlê bi tundî rexne kirin ku Kurdan paşguh dixin û hevkariya wan nakin ji bo avakirina dewletek Kurdî ya serbixwe: "Ev demek dirêj e, Îsraîl dostaniya dijminên Kurdan dike, wek Tirkiye, ku mezintirîn dijminê gelê Kurd li cîhanê ye." Mela bûyera keştiyên hevkariyê jî wek "şano" bi nav kir û got: "Peywendiyên Îsraîl û Tirkiyê di hemû waran de bihêz in û dostên hev in. Ew dixwazin bi vê kiryarê mirovên sade bixapînin."

Navbirî ku demekê li Başûrê Kurdistanê pêşmerge bû û ji demek dirêj ve li Ewrûpayê dijî, da zanîn ku Kurd ji aliyê Îsraîlî û Filistîniyan ve tên rexnekirin û pêdagirî liser wêya kir ku Îsraîlê heta îro hevkariya Kurdan bi cidî nekiriye: "Heta niha bi awayekî cidî Îsraîlê destê xwe dirêjî Kurdan nekiriye. Filistînî jî dibêjin Kurdên Îraqê bi hevkariya Cihû û Amerîkiyan hatine welatekî Ereb û Misilman dagir kirine, lê Îsraîl hevkariya Kurdên Başûrê Kurdistanê nake û Kurdên Tirkiyê jî wek terorîst dibîne ji ber ku şerê Tirkiye ya dostê Îsraîlê dikin. Diviya piştî 1948'an Cihûyan piştîvaniya Kurdan bikira ku wek wan sitembar û bindest bûn, lê mixabin Îsraîl piştgiriya sitembaran nake, lê ya dewletên bihêz û sitemkaran dike."

## Gelek caran rêjîmên Ereban, Kurdan tometbar dikin ku dostaniya Îsraîlê dikin, lê gelo mafê Kurdan parastî ne heta ku daxwaza hevkariyê ji Îsraîlê nekin?

Cewad Mela ku berî çend salan "Hikûmeta Rojavayê Kurdistanê li Diyaspora" ragihand û Sûriyê wek dagîrkera parçê Rojavayê Kurdistanê bi nav dike, rexne li Ismaîl Umer digre û dibêje: "Ger zordarî li mirov bê kirin, wê hawara xwe bigihîne hemû aliyekî. Gelek caran rêjîmên Ereban Kurdan tometbar dikin ku dostaniya Îsraîlê dikin, lê gelo mafê Kurdan parastî ne heta ku daxwaza hevkariyê ji Îsraîlê nekin? Daxwaz dikim welatên Rojava hevkariya me bikin da ku em bikarin dewleta Kurdistanê ya serbixwe damezrînin."

## 1948'an, dema Îsraîl hat damezrandin, peywendiyên nehênî û eşkere di navbera hemû dewletên Erebî û Îsraîlê de hatin dirustkirin

Mela şaş dimîne bê çima dirustkirina peywendiyan li gel Îsraîlê ji Ereban re rewa ye lê ji bo Kurdan qedexe ye: "Ji sala 1948'an, dema Îsraîl hat damezrandin, peywendiyên nehênî û eşkere di navbera hemû dewletên Erebî û Îsraîlê de hatin dirustkirin. Lê ger Kurdek bêje, ezê li gel Îsraîl peywendiyan dirust bikim, wek gunehek mezin tê hesibandin. Sûriye û Îsraîl di peywendiyek berdewam de ne. Ji ber peyman di navbera wan de heye, Sûriyê ji 1948'an ve nehişt Filistîniyekî tenê jî ji xaka wê derbasî hundirê Israilê bibe. Êdî çima wê Kurd, Îsraîlê wek dijminê xwe bi nav bikin?"

Serokê Komela Rojavayê Kurdistanê Cewad Mela





# Seredana Barzanî: Destpêka lihevhatina Kurdan û Tirkan?

Bayram Ayaz



Serokê Kurdistanê Mesûd Barzanî piştî şeş salan bi seredanekgirîng hat Tirkiyê. Em dixwazin vê bûyerê ji aliyê têkiliyên gelên Kurd û Tirk ve binirxînin. Pirs ev e: Gelo serdana Enqerê wê bikare di navbera Kurdan û Tirkan de bibe destpêka lihevhatinek dîrokî?

Hikûmeta AKP'ê li gor hêza xwe qedrek baş da Serokê Kurdistanê û şanda pê re. Mijara "nebûna ala Kurdistanê" pirsek serekî nîne û divê zêde neyê mezin kirin. Esil serkeftina dîplomatik di hevdîtinan de tunebûna ala Îraqê bû. Ji ber ku dewleta Tirkiyê di peywendiyên navdewletî de Bexdayê esas digre. Birêz Barzanî wek Serokê Herêma Kurdistanê û bi fermî hatibû dawetkirin. Esil ev e. Peywendiyên Tirkiyê û Başurê Kurdistanê bi hêsayî negihaştin vê pêvejoyê. Diplomasiya Tirk, Kurd, Amerîkî bi salane li ser normalîzekirina têkiliyan kar dikin. Seredan encama van hewldanan e.

Divê em ji bîr nekin ku AKP ji aliyê hêzên Tirkçî, Kemalist-militarîst ji çar aliyan ve hatiye dorpêçkirin. Rewşa Hikûmetê ewqasî ne baş e. Bi taybetî vê hêlê ku AKP dixwaze di destûrê de hinek guherînan pêk bîne! Gotegot heye ku hewldanên qedexekirina AKP'ê hê jî berdewam e. Dosyayên AKP'ê û BDP'ê amade kirine. Dibe ku pêşî li dijî BDP'ê doz vekin û BDP'ê bigrin, da ku nakokî û pevçûnên navbera Hikûmetê û BDP'ê gurtir bikin. Mumkîn e li dijî AKP'ê jî doz vekin.

Di vê xirûcira navxweyî de, gelo wê ev seredan bikare bibe destpêka hevbendiyek siyasî-stratejîk di navbera Tirkiyeyê û Herêma Kurdistanê de, an na? Pirsa ku siyaset, diplomasî û bîreweriya Kurdî pê mijûl bibe, yek jê ev e. Serok Barzanî di axavtinên xwe de îşaret pê da ku 'Ew Tirkiyê li ser rêya Ewrûpa û Rojava wek pirekê dibînin. Her wisa pirek ji bo peywendiyên Kurdan bi Bexdayê re."

Gelo mirov dikare van gotinan wek peyamek honandina hevbendiyek siyasi-stratejîk bi Tirkiyê re bixwîne? Tirkiye jî ji vê re amade ye? Ji bo xweşkirina zemînê ji bo vê stratejiyê, pêşniyariyên Serok Barzanî du xal in:

- Di her astê de bihêzkirina peywendiyên Tirkiyê û Herêma Kurdistanê.
- Piştevaniya siyaseta "vebûna demokratîk" ya Hikûmetê û bi rêyên aştiyane çareserkirina doza Kurd li Tirkiyê.

Di warê aborî û bazirganî de pirsgirêk tune, sermiyandarên Tirk amade ne bên Kurdistanê. Lê çareseriya doza Kurd? Dewleta Tirk ji vê re dilxwaz e? Bi vê armancê, dikare ev seredan bibe destpêka lihevhatina gelê Kurd û Tirk? Eger yekrêziya Kurdan hebe û hêza oligarşiya Kemalist-militarist bê şikestin, lawaz bibin, mumkîn e û wê seredan bibe destpêka hêviyên geş û realîst.

# Mamosteyên Ewrûpa pê şaş mane

**Piştî ku Ebdulkerîm Yasîn sedemê nexweşiya pûka diranan li cîhanê vedît, gelek zanîngehên cîhanê daxwaz jê kiriye ew li cem wan xwandina xwe bidomîne.**



Ebdulkerîm Yasîn, mamosteyê Zanîngeha Selahedîn li Hewlêrê ye

**Arî Osman** Hewlêr

Berê zanayan sedemê kulbûna pûka diranan bi hebûna bakteryayan ve girêdidan û nizanîbûn sedemê dirustbûna van bakteryayan çine, heta di dawiyê de mamosteyekî Kurd bi rêya lêkolîneke karîbû enzêmekê bibîne ku dibe sedema çêbûna van bakteryayan.

Ebdulkerîm Yasîn yê 34 salî li Hewlêrê jidayik bûye, ew mamosteyê beşa biologik e li kolêja zanistî ya Zanîngeha Selahedînê. Sala 2005'an ji bo xwendina doktora li ser biotechnology, Ebdulkerîm diçe Zanîngeha Jagiellonia, li Polanda ku zanîngeha herî kevin a Ewrûpa ye.

Navbirî li vê zanîngeha Polandî di hundirê 6 mehan de bi hevkariya Prof. Dr. Hab Jan Potempa bi amadekirina lêkolînekê ve mijûl dibe li ser sedemê kulbûna pûka diranan, dûre digihe encamekê ku sedemê vê kulbûnê corekî enzêma ye. Niha ev enzêm bi navê wî hatine kirin (Karil Ya.0sin) û ev vedîtina wî li zanîngeha navhatî tê xwendin.

Li gor serjimêriyên pizîşkî yên Ewrûpa ji sedî 70'ê hevwelatiyên Ewrûpa bi nexweşiya pûka diranan dikevin. Ebdulkerîm Ebdulla di hevpeyvîneke de li gel Rûdawê amaje da ku berî wî hinek xwendekarên din bo dema 3 mehan li ser vê nexweşiyê lêkolîn amade dikirin, lê ti encam bidest nexistin: "Lê pêdagir bûm li ser berdewamkirina lêkolîna xwe û di hundirê şeş mehan de giham encamekê."

Piştî dîtina vê enzyme, profesorên zanîngehê ji îmkanên vî ciwanê Kurd şaş dimînin û daxwaz jê dikin li zanîngeha wan bimîne: "Şaş mabûn ji encama lêkolîna min. Pir hewl dan li wir bimînim, lê li Zanîngeha Selahedîn mamoste bûm, loma min nekarî li wir bimînim û di destpêka îsal de vegeriyam Kurdistanê."

Dîtina Ebdulkerîm Yasîn di kovara Biological Chemistry ya Amerîkî di Rêbendana îsal de hatiye belavkirin, ku kovareke mehane ye û vedîtinên cîhanî yên herî nû belav dike. Piştî belavbûna vê babetê, çend zanîngehên cîhanê peywendî bi Ebdulkerîm kirin: "Hinek zanîngehên Swêdî, Spanî, Denmarkî û Amerîkî daxwaz ji min kirin li zanîngehên wan lêkolînên xwe bidomînim, lê ji ber li vir mamoste me, min nikarîbû peywendiyan li gel wan bikim."

Mamoste Ebdulkerîm dibêje ewê hêjî li ser vê lêkolînê kar bike: "Hê sedemê dirustbûn û çareserkirina vê enzyme maye ku bibînim." Niha enzyme bi navê vî ciwanê Kurd hatiye kirin û ji bilî wî ne ji mafê ti kesê dine tiştan li ser vê enzyme bike. Lê navbirî dibêje, ji ber nebûna laborên pêşketî ew nikare li Kurdistanê karekî baş encam bide.

Zanîngeha Polendî daxwaz ji Ebdulkerîm kiriye bê hember lê bixwîne, lê navbirî dibêje kolêja wî nahêle ew li wir bixwîne: "Kolêja min rê nade ku ez postdoktora ya xwe xilas bikim. Dibêjin divê tu li vir dersan bidî û tenê emê dema salekê bidin te bo xwendina post-doktorayê, lê du sal ji min re divên."

Ragirê kolêja zanist li Zanîngeha Selahedîn, Kemal Mistefa, eşkere kir ku wan mohleta du salan nedaye mamoste Ebdulkerîm: "Pêwîstiya kolêja me bi mamosteyekî wek wî heye, em dikarin tenê di dema bihênvedanê de rê bidin wî." Mistefa axaftina xwe wiha qedand: "Ger ji bo berdewamkirina lêkolîna xwe, ew laboreke bihêz dixwaze, bila daxwaza wê bike û emê hewl bidin jê re garantî bikin."

---

Ji serpêhatiyên Kurdên Almanya

# Çawa Şewqî Îsa bû karkerê tirênan

**Sîrwan H. Berko** Berlîn

Demjimêra mezin li rawestgeha S-Bahnê li taxa Berlînê Schönebergê seet 18:32 nîşan dide. Tirênek nêzîkî rawestgehê dibe. Şewqî Îsa ji xaniyekî biçûk li ser rêya peyade ya rawestgehê derdikeve, li pêşiya alava axaftinê (mikrofonê) radiweste û daxive: "Tirêna hatî diçe Oranienburgê." Piştî kêlîkekê tirêna nava Berlînê dimeşe. Şewqî Îsa dîsa vedigere xanîkê biçûk.

Dema Kurdê 55-salî berî 35 salan bi tirêna ji Stenbolê hat Berlînê, wî nedizanî ku rojekê wê tirên bibe karê wî. Kurdê ji Sûriyê li Berlînê ciyolociya xwendiye, lê piştî xwendinê wî nekarî ji xwe re karekî peyda bike. Ew wan rojan tîne bîra xwe û dibêje: "Tevî ku min xwendina xwe gelekî baş bi dawî anî – ez hingî baştirîn xwendekarê biyanî bûm – min kar peyda nekir. Di sala 1988'an de min serî li şirketa çûnûhatinê ya Berlînê (BVG) da û ji wan doza kar kir. Wan yekser kar da min û hingî ji min re got: Endezyarek dixwaze cem me kar bike. Tu bi xêrê hatî." Ev di destpêka 1988'an de bû. Ji hingî ve û ta berî pênc salan karê Şewqî Îsa ew bû ku li hin deverên Berlînê ha ji çûnûhatina tirênan hebe. Lê ji dema ku ev kar ji ciyekî navendî tê kirin, Îsa li rawestgeha S-Bahnê ya Yorckstraße (Großgörschenstraße) kar dike. "Ger pêwîst be, em agahiyan didin rêwiyan, hesinê rêya tirênan diguherînin, ha ji nîşanan hene û haydar in ku ziyan li ti kesî neyê kirin."



(Wêne: Rûdaw)

Şewqî Îsa bi dehan sale li vê rawestgeha tirênê ya li Berlîna paytexta Almanya kar dike

Şewqî Îsa zewicî ye û bavê çar zarokan e. Ji bilî karê wî yê li cem BVG ew herweha wek wergêrê ji bo zimanên Kurdî, Erebî û Sûryanî dixebite. Ew di dema xwe ya vala de nivîsarên li ser ola êzîdî dinivîsîne. Îsa bi xwe êzîdî ye û ta niha du pirtûkên wî derketine, pirtûka siyem gerek di payîza îsal de derkeve. Tevî ku ev bîst salên wî ne ku tirên karê wî ne, Îsa venaşêre bê çiqasî ew wî nerehet dikin. Ew dibêje: "Ne wilo ye ku ez ewqasî dînê tirênan im, lê ez mecbûr im vî karî bikim da ku nan bidim zarokên xwe. Ji aliyekî din ve ev karek rehet e û ti hêza zêde jê re ne pêwîst e." Şewqî Îsa di xebata xwe ya rojane de rastî gelek bûyeran hatiye. Ew bi taybetî ji ber bûyereke di dema Pêşbirkên Gokê yên Cîhanê de li Almanyayê di havîna 2006'an de xemgîn e. Hingî çar kes li gel kûçikekî li rawestgeha tirênan bûn, li ciyî ku Îsa lê kar dike. Ji ber ku yek ji wan li ser lêva rawestehê rûniştibû û lingên xwe daxistibûn ser hesinê tirênan, Şewqî Îsa çû cem wî. "Hingî min jê re got: Ma tu dîn bûyî? Dema min destê xwe dirêjî wî kir, da ku wî ji wir dûr bixim, kûçikê wî êrîşî min kir û dev li lingê min kir. Ji kûçik werê min xwestiye êrîşî xwediyê wî bikim." Piştre kûçik û xwediyê wî nema xuya kirin. Lê li kêleka bîranînên xemgîn Şewqî Îsa herweha komek bûyerên erênî jî tîne bîra xwe: "Rojekê ji rojan Tirkek li gel xanim û zarokeke xwe hatin ciyê karê min. Wî bi zimanekî nîv Almanî ji min re got: Abê, ji dema ku ez zarok bûm, tu li vir kar dikî; ev bûn 22 sal û hîn tu li vir î; ez zewicîm, zarokeke min çêbû û tu hîn li vir î." Îsa bi gotinên xwe re dikene û dibêje ku ew dixwaze hîn sê-çar salên din jî kar bike. Êdî ew dixwaze ser bi reza xwe teqawid bibe. Ta hingî mirov dikare li rawestgeha S-Bahnê ya Yorckstraße (Großgörschenstraße) gelek caran li van gotinan guhdar bike: "Ji kerema xwe re siwar bibin. Ji kerema xwe re ha ji xwe hebin. Tirên niha dimeşe.

# Êzdî li çayxaneya Hemdî Cûqî li hev dicivin

## Hin kes ji bo lîstinê, hin jî ji bo tijekirina dema xwe ya vale û hin jî ji bo dîtina hevalên xwe tên çayxaneyê

**Mistefa Çwartayî** Köln

Hemdî Cûqî Kurdekî Êzdî ye û ji Başûrê Kurdistanê ye, wî zêdebûna hejmara Êzdiyan li Almanya bi derfet zanî ku çayxaneyekê ji bo lihev civiyana wan veke: "Li vir em civateke ji hev nêzîk in. Em ji serdan û hevdîtinan hez dikin, xizm û hevalên me hene, eger cihekî wiha nebe, wê kîjan der me li hev bicivîne?"

Êzdiyên rûniştvanên Almanya berdewam diçin çayxaneya Cûqî ku zêdeyî sê sal e vekiriye û kur û birayê wî alîkariyê didin wî. Di çayxaneya Hemdî de li ser her maseyekê çar-pênc kes rûniştine û kaxetên lîstinê di destên wan de ne. Lîstika sereke ya mêvana Konken: "Lîstik li ser ça, qehwe, bîra, zalate û goşt tên kirin, vêya ne qumar e, xwe mijûl kirin e."

Ji bo razîkirina mêvanan, Hemdî çayxaneya xwe fereh kiriye, herwiha xwarinan, hêla înternetê û du kompyuter jî anîne: "Hemû mêvan naxwazin bilîzin, hin kes xwendewar in û ji xwendinê hez dikin, loma ez wiha fikirîm hêla internet jî bînim."



(Wêne: Rûdaw)

**Li çayxaneya Hemdî Cûqî, çendîn corên xwarinan û înternêt jî heye**

Selîm Mecîd ji bajarê Şêxan e, ew dibêje: "Çayxaneya Kek Hemdî bo me tiştekî xweş e. Di dema xwe ya vale de jî em hev li vir dibînin." Selîm giringiyek din a vê Çayxaneyê dibîne û dibêje: "Eger pirsgirêkek me hebe, em li vir li ser daxivin û çareseriyekê jê re peyda dikin, di pirsgirêkan de em alîkariya hevdu dikin, herwiha em kesên nû jî nas dikin."

Gelek mêvanên çayxanê dema kamera yan mîkrofonê dibînin, vediciniqin û naxwazin baxivin û wêneyên wan bên kişandin, her yek ji wan dibêje hevalê baştir dizane bipeyive. Hin kes jî dibêjin: "Wan çi got wê ji me re jî binivîse." Xaniyê Weysî jî nîv demjimêrê ji çayxaneyê dûr e, ew hefteyê rojekê tê vir da hevalên xwe bibîne û li gel wan bilîze: "Ger em neyên vir, emê biçin kû? Vir xerîbî ye, lê di çayxaneyê de em hest bi xerîbiyê nakin."

Reşo Xemo, berevajî navê xwe ye, ew ciwanekî ektîv e û bi bizav e. Reşoyê rûgeş û dilxweş hemû rojan tê çayxaneyê û li wir kar dike, ew derbarê mêvanan de dibêje: "Piraniya wan Kurd in, kesên ne Kurd pir kêm tên vir. Her neteweyek Îtalî, Ereb, Tirk û .. diçin çayxaneyên xwe." Reşo Xemo bi mêvanên xwe re pirsgirêk tune: "Têkiliyên min di gel mêvanan pir baş e û pirsgirêkên me tunene. Ji ber ku em hemû nasyar û xizm in."

Neyar Ehmed ku ji bajarê Sêmêlê ye, hefteyê çar pênc caran tê çayxaneyê: "Cihê jiyana min li vir nêzîk e, ez di dema betaliyê de yan piştî qedandina kar têm vir, hem xwe mijûl dikim, hem jî hevalên xwe dibînim." Ew çayxaneyê wek beşeke kultura Kurdî dihesibîne: "Li Kurdistanê jî xelk rojane diçin çayxaneyan. Xweşiyeke taybet e, em hev dibînin û bihev re jî dilîzin." Neyar dibêje dema tê çayxaneyê, hest dike ew li Kurdistanê ye.

DJ ya biçûk Liyan:

# Hûn bi xêr hatin mêvanên hêja...

**Robîn Botî**

Heke hûn rojekê li ser înternetê radyoya Kurdî, Kurd FM (www.kurdfm.com) guhdarî bikin, belkî hûn rastî dengê DJ'ya Kurd a heft salî, Liyanê bên ku bi Kurdiya xwe ya şêrîn wiha bang dike, "Dembaş guhdarên hêja, hûn bi xêr hatin mêvanên hêja! Kurd FM dengê çanda Kurdî ye. Zimanê Kurdî destnîşana hebûna me ye. Bi Kurdî bixwînin, bi Kurdî baxivin!"

### "Di ber stranan re govenda Kurdî jî digerîne"

Liyan di nava malbateke Kurdperwer de li nêzîk bajarê Almanya, Frankfurtê dijî. Di demeke zû de bala wê ketiye ser stran û mûzîka Kurdî, lewma dema bavê wê li ser înternetê radyoyeke Kurdî vekir, Liyanê jî xwestiye tê de DJ'tiyê bike û stranên xwe yên xweş ji hezkeriyên mûzîka Kurdî re bide guhdarî kirin. Bavê wê bi keça xwe ya biçûk gelekî serbilind e û behs dike ku Liyan gelek caran di ber stranan re govenda Kurdî jî digerîne.

### "Çima diya min bi Almanî dibêje, Entschuldigung!?' Çima bi Kurdî nabêje, Bibore!?"

Liyana delal di Baxçeyê Zarokan de jî gelek serkeftiye. Li wir zimanê Almanî gelekî baş dipeyive, lê li malê jî dema ku diya wê bêhemdî gotineke wekî "Entschuldigung!" (bibore) bi kar tîne, ew giliyê diya xwe li cem bavê xwe dike û dibêje, "Çima diya min bi Almanî dibêje 'Entschuldigung!' çima bi Kurdî nabêje 'Bibore!' Ew dixwaze li mal her tişt bi Kurdî be, ew bi hevalên xwe yên Alman re bi Almanî û bi yên Kurd re bi Kurdî dipeyîve û dilîze.


(Wêne: Rûdaw)

**Liyan ji wê yekê gazinc dike ku di televizyonên Kurdî de ew bernameyeke zarokan ku xîtabî wê bike, nabîne.**

Liyan herî zêde ji wê yekê gazinc dike ku dema ew rûdine ber televizyonên Kurdî, ew bernameyeke zarokan ku xîtabî wê bike nabîne, dixwaze bi vî rengî Kurdiya xwe pêş ve bibe. Liyan her çiqas ku zêde wextê wê tune jî, lê dixwaze di radyoyê de bêtir kar bike, ji bo vê yekê zorê dide bavê xwe.

### "Strana Oremar hez dikim"

Derbarê hezkirina wê ji bo stran û mûzîkjenên Kurd, ew bi şermînî dibêje, "Bêtir stranên folklorîk û yên govendê hez dikim. Ji nav stranbêjan jî dengê Şivan Perwer, Agirê Jiyan û Koma Awaza Çiya, bi taybetî jî ji strana Oremar hez dikim."

Bavê wê di vir de lê zêde dike ku Liyan berî çendekî Şivan Perwer bi xwe jî dîtiye û bi hev re sohbet kirine, lewma niha bandora Şivan jî li ser pir e.

Piştî ku dengê Liyanê di radyoyê de derket, gelek kes pê mendehoş û kêfxweş bûn e û dixwazin zarokên wan jî weke wê bi Kurdî mezin bibin.

Liyan bi cil û bergên xwe yên Kurdî, bi Kurdiya xwe ya şêrîn û bi şarezatiya xwe ve xuya ye wê ji gelek zarokên Kurd re bibe mînakeke baş.

Muzîkolog Cemîla Casimê Celîl:

# Cînarên me stranên me dikin milkê xwe

**Salihê Kevirbirî** Viyena


(Wêne: Rûdaw)

**Cemîla Casimê Celîl (rûniştî)**

Muzîkologa Kurd a navdar Cemîla Casimê Celîl, li Viyaneya paytexta Nemsayê bi sernavê "Peywendî û bandora Ziman û Muzîka Kurdî" semînereke pêşkêş kir.

Cemîla Casimê Celîl ku ji Êrîvana Ermenîstanê li ser daxwaza dezgeha Komkarê hatibû vexwendin, bi giranî li ser muzîka Kurdî ya gelêrî rawestiya û diyar kir ku rola muzîka Kurdî ya zargotinî/folklorî li ser xurtkirin û parastina zimanê Kurdî giring, zelal û berbiçav e.

Cemîla Casimê Celîl ku bi munasebeta "2010, Sala Zimanê Kurdî" hatibû vexwandin. Di semînera ku rastî eleqeyeke baş hat de, Cemîla Celîl axaftina xwe bi Kurdiyeke hêsan, rewan û herikbar kir. Muzîkologa Kurd ragihand ku hunera muzîka Kurdî ya gelêrî wekî fenomenekê, di dîrokê de barekî giran hildaye ser milên xwe û di vî warî de, ji bo parastina zimanê Kurdî roleke baş lîstiye. Cemîla Celîl herwiha da zanîn ku di gelek çax û deman de ziman û muzîka Kurdî zilmeke mezin dîtine, lê ji ber hevbendiya ziman û muzîka Kurdî di dilê her Kurdî de bi awayeke kûr rûniştiye, her du beşên Kurdewarî, wekî çavkaniyên bingehîn mane.

Balkêş bû ku Cemîla Celîl di axaftina xwe de, bi mînakên stranên zargotinî yên bi rengê Henîfe, Tenzere, Hoy Can, Tu Dîn î, Hêdî Bajo, Sûra Qeleniyê, Filîtê Quto, Ker û Kulik, Metê bi qedandina Mîşayê Reşîd, Mecîdê Silêman, Efoyê Esed, Memlîyê Xemo, Elîyê Hemed, Egîdê Têcir û Şeroyê Biro kir ku heyacaneke mezin li cem amadebûyên semînarê pêk bê.

Cemîla Celîl bal kişand ser pirseke aktwel û got: "Stran û kilamên me, ji aliyê cînarên me ve tên bikaranîn û wekî milkê xwe didin nîşandan. Bêguman ev kilam û stran milkê me Kurdan e." Cemîla Celîlê bang li nifşê nû kir ku hay ji çanda Kurdî hebin.

Di semînera navborî de Prof. Dr. Celîlê Celîl, berpirsiyarê Komkara Nemsayê, Metîn Can û ji her çar beşên Kurdistanê Kurd amade bûn.

# “Ezê biçim kurseke hînbûna zaravayê Soranî”

**Ebdula Nihêlî** Duhok

Dema Yekbûn li ser nêrdewana otêlê dihat xwar, wê bi girnijîn û kenî silav kir. Hunermenda ji Bakurê Kurdistanê, Yekbûn dilê xwe bo Rûdawê vekir û bersiva pirsên me da.

Yekbûn xelka Mêrdînê ye, lê li Stenbolê mezin bûye, ew ji zaroktî hînî zimanê xwe yê Kurdî bûye: “Bavê min mirovekî neteweperwer bû û nedihişt em li malê bi Tirkî baxivin.” Yekbûn beşa perwerdeya muzîkê li Tirkiyê xwendiye û berê xwe daye karê hunerî: “Di destpêkê de, min li gel xûşka xwe ya mezin stran digotin. Piştre hemuyan ji min re got, dengê te xweş e û divê tu paşguh nexe. Sala 1992’an cara yekem min stranek li gel Koma Çiya tomar kir û min du berhem jî li gel wê komê tomar kirin, piştre min bi xwe hewl da berheman dirust bikim û heta niha du berhemên min ên belavkirî hene.”


(Wêne: Rûdaw)

**Hunermend Yekbûn**

> “Em hewl didin bi awayekî yekcarî vegerin Kurdistanê. Li Amed, Duhok an Hewlêrê be ne xem e, giring li Kurdistanê bin.“

### “Jandirmeyên Tirk dihatin studyoyên tomarkirinê”

Malbata Yekbûnê pir alîkariya wê kirine, lê Hikûmeta Tirkiyê jî herdem pirsgirêk bo wan derxistine: “Gelek caran dema ku me li studyoyan stran tomar dikirin, Jandirmeyên Tirk dihatin hundirê studyoyê û arîşe dirust dikirin.” Yekbûn dibêje: “Hê jî pirsgirêkan ji hunermendên Kurd re çê dikin, lê ne wek berê. Berî sê mehan jî, li Batmanê ji ber konserekê dadgehê doz dijî min vekir û hê ev doz didome. Li ser wê dozê ez nayêm zindanî kirin, lê tenê mebesta wan acizkirina hunermendên Kurd e, ew naxwazin hunermendên Kurd rehet bin, lê divê herdem serê wan bixin belayan de.” Berî du salan Yekbûn çû Almanya, wê got: “Qismeta min li wir çê bû, hevjînê min li wir dijiya, lewra niha ez çûm wir û em niha li Almanya dijîn.” Yekbûn heta niha şeş caran hatiye Başûrê Kurdistanê û kêfa wê gelek jê re tê: “Kurdistan gelek xweş e, dema ez têm dibînim guhertinên baş pêk tên û Kurdistan di hemû waran de pêş dikeve.” Ew hunermend rexneyê li nerîna civaka Kurd hember keç û jinan digre û dibêje: “Hê li welatê me bi nerîneke şaş berê xwe didin jinê, baştir dibe, lê hê jî maye.” Ev du sal in Yekbûnê zewiciye lê hê zarokên wê çê nebûne.

Yekbûnê gelek rexne li jiyana xerîbiyê dike û dibêje: “Jiyana Ewrûpa û xerîbiyê pir nexweş e. Em hewl didin bi awayekî yekcarî vegerin Kurdistanê. Li Amed, Duhok an Hewlêrê be ne xem e, giring li Kurdistanê bin. Li Ewrûpa mirov çiqasî serkeftî be jî, beramber wan mirov di pileya dûyem û sêyem de tê.” Yekbûnê eşkere jî kir ku ew bêtir dixwaze li bajarê Başûrê Kurdistanê, Duhokê bijî: “Ji ber xelkê Duhokê bi zaraveya Behdînî daxivin û xweza û seqaya wê ji hemû bajarên din ên Kurdistanê xweştir e.”

### “Keç weke sêks di klîpan de tên bikaranîn”

Yekbûn ji bêtiriya klîpên ku niha tên dirustkirin ne razî ye: “Di ji sedî 80’ên klîpên ku niha tên çêkirin de, keçeke tazî li gel xortekî semayê dike, bêyî ku rameneke evîniyê tê de hebe. Ji ber ku bêtiriya van keçan tazîbûna wan weke seks tê bikaranîn.”

Yekbûnê stranek bi zaraveya Soranî gotiye: “Di berhema min a yekem de, bi navê “Min Negorawim” min straneke Soranî got, li ser wê ez gelekî hatim rexnekirin, ji ber Soranî gelekî rexnegir in. Lewra niha ez nikarim ti stranên din ên Soranî bibêjim. Heta ez baş hînî Soranî nebim, ezê nikaribim mafê stranên bi vî zaraveyî bidim. Vê carê dema ez herim Almanya, ezê biçim kurseke hînbûna Soraniyê ji bo bi awayekî baş hînî vî zaraveyî bibim, piştre ezê çend stranên Soranî jî tomar bikim.”

### “Min daxwaza TRT-6 red kir”

Kanala televizyona dewletê ya bi zimanê Kurdî TRT-6 daxwaz ji Yekbûnê kiribû ku ew li gel wan kar bike: “Min qebûl nekir ji ber hê zûye mirov li gel wan kar bike. Hê siyaseta wan derbarê Kurdan de ne baş e, ew kesên ku xwedî hizrên netewî bin nikarin li gel TRT-6 kar bikin. Bi dehan hunermendên hêja li gel vê kanalê kar dikirin, lê berdewam nekirin. Niha pir kêm xelk diçin programên wê, loma neçar dibin hunermendên Tirk bînin bernameyên xwe.” Yekbûn nerîna xwe li ser TRT-6 bêtir eşkere dike û dibêje: “Ez ne dijî vekirina TRT-6 bûm. Lê divê hê jî nerîna xwe derheqê Kurdan biguherîne û zêdetir rêz li daxwaziyên gelê Kurd bigre.”

Yekbûn dibêje hebûna van hemû kanalên Kurdî li Başûrê Kurdistanê nîşana pêşkeftinê ye: “Ez şaş mam dema ku hatim Başûrê Kurdistanê û min dît ku li her bajarekî Kurdistanê bi dehan kenalên herêmî û asimanî hatine vekirin. Ev ji bo hunermendan gelekî baş e.”


(Wêne: Rûdaw)

**Şerexfan Cizîrî 2001’ê ji Swêd vegeriya Kurdistanê**

# “Rewşenbîrên Kurd bi çavekî îdealîzekirî li Kurdistanê dinêrin”

Şerefxan Cizîrî dibêje min xwest ez parçeyeke civaka xwe bidim nasandin, loma min pirtûka xwe li ser eşîran nivîsand

**Tu 25 salan li derveyî welat mayî, ji nişka ve te pişta xwe da Swêd û di 2001’ê de li gel û welatê xwe, li Nisêbînê vegeriya. Çima tu vegeriya?**

Sedema herî sereke welatparêziya me ye. Em hez bikin hez nekin ev welat welatê me ye. Em nikarin bibin ji deverek din. Carinan me henek li hevalên xwe yên Îskandinavî dikir û digot:’’Bakurê Swêd bidin me em ê li vir Kurdistanekê çêbikin!’’ Lê nabe. Koka me, zimanê me, erdnigariya me ev der e. Em ji vî welatî ne, vî gelî gelek ked da min û diviyabû min jî ev keda wan li wan vegeranda û ez bi vê armancê vegeriyam.

**Rewşenbîrên me yên li derveyî welat hewl didin ku ji welatên dûr rewşa civaka xwe analîz bikin. Gelo ev çiqasî pêkan e?**

Bi ya min ev ne pêkan e. Dema ku mirov ne di nava gel de be analîzên me wê tim kêm bin û nikaribin rastiya civakê vebêjin. Mirovên me yên li Ewrûpa bi çavekî îdealîst li Kurdistan û gelê Kurd dinerin. Ev jî dibe asteng ku em rastiyê bibînin. Dema ku tu bala xwe dide tîpên di roman û çîrokên ku ji hêla wêjevanên me yên Ewrûpî ve hatine nivisîn, dibîne ku ew ji tîpolojiya Kurd gelekî dûr in. Herwiha di warê lêkolînî û zanistî de jî nikarin analîzên li cihê xwe bikin. Ya giring ne ew e ku mirov di serê xwe de tîpolojiyekê çêbike û bibêje, ’’Kurd wilo ne.’’

Ji dûr ve wek antronorekî futbolê tu şîretan bikî bi ya min di demek dirêj de cihê xwe nagire.

**Bi giştî tu li ser rewşenbiriya Kurdî çi difikirî?**

Bi ya min rewşenbiriya Kurdî bi raman, felsefe û zanyariya dinyayê re entegre nebûye, bi kûrahiya wê negihiştiye, ew nekiriye parçeyek ji xwe.

Yekîtiyek rewşenbîriya me ya ku em bikaribin pê şanaz bibin tuneye. Tevgera rewşenbiriya me, bi ya min wek pitepita li ser tenûra ye. Divê ne wilo bûya. Divê me prensîbên bingehîn ji bo xwe danîbûna û ji bo wan prensîban bixebitîna. Dijminatiya di nav rewşenbiriya Kurd de, galgala di nav wan de ne berhemdar e.

Li şûna ramanan, teoriyan, modelan, helwestan nîqaş bikin em li ser kesan nîqaşan dikin.

Helbet wek takekes gelek kes hene ku xwe bi pêşxistine lê wek tevgera rewşenbirî gelek kêmasiyên me hene. Siyasetmedarên me hewl didin rewşenbîrên me ber bi xwe ve bikişînin lê dive mirov wan ne ber bi xwe ve; lê ber bi welat ve dehif bide, ber bi dozê ve dehif bide.

**Pirtûka te ya dawî “Omeriya Mirsom” li ser eşîra Omeriyan e. Te çima pêdivî bi nivîsîna pirtûkek li ser eşîrê dît?**

Civaka me ji eşîran pêk hatiye. Min xwest ez bi vê pirtûka xwe parçeyek ji civaka xwe bidim nasîn. Ger hinên din jî xebatên bi vî rengî bikin û em van xebatan bigihînin hev em ê bikaribin wêneyekî Kurdistanê derxînin. Paradoksek e; yê ku Kurd û Kurdistan li ser piyan hiştî û her wiha yê ku ji hev belav jî kirî eşîr in. Bo vê jî da ku em vê paradoksê baş fêhm bikin û wêneyekî Kurdistanê derînin, pêdivî bi xebatên wilo heye.

**Hevpeyvîn: Şengul Ogur**

*Şerefxan Cizîrî di 1955’an de li Qamişlo ji dayik bûye. Ji 2001’ê ve li Nisêbînê dijî. Li Swêdê Beşa Dîroka Raman xwendiye û mastira xwe li ser vê beşê kiriye.*

***Berhemên wî:***
***Tarîh ve Uygarlık(2 cilt)***
***Yazarlık ve İdeolojî***
***İskandinavya Modelî***
***Bize Bir Felsefe Lazim***
***Edebiyata Devkî û Kulturî***
***Raman û Kultur***
***Omeriya Mirsom***

# "Çel Awaz"ên Ali Baran derketin


Hunermend Alî Baran

Seyîdxan Kurij Karlsruhe

Hozan Alî Baran ê Dêrsimî, lawê dengbêjê navdar Mehmûd Baran, li bin navê "Çel Awaz" albûmek nû derxist.

Alî Baran wateya navê albûma xwe wisa dide xuyakirin: "Li Dêrsimê ji bo hejmara çil, "çel" dibêjin. Ew hejmar di nav Elewî, Cihû û Musilmanan de pir hatiye zimên û hejmarek muqedes e, wateya awazê jî melodî û deng e. Çel Awaz bi hevre "Çel Deng" yan jî "Çel Melodî."

Hozan Alî Baran ji salên 1978-79'an ve bi Kurdî distire û li ser muzîka gelerî dixebite. Ew piranî kilamên bavê xwe û yên derdora Dêrsimê distire. Alî Baran hem kilamên Kurmancî, hem jî yên Kirdkî (Zazakî) distirê, wî ew helwest ji bo xwe kiriye kevneşopiyek. Li ser vê kevneşopiyê Alî Baran dibêje: "Ez di nav stranan de mezin bûme û bi salane profosyonel muzîkê çê dikim, ji bo wê jî bêtiriya stranên xwe ez dinivîsim û meqamên wan jî ez bi xwe çê dikim. Lê ez stranên bavê xwe, yên xal û apên xwe jî dibêjim. Li Dêrsimê Kurmancî- Dimilî (Zazakî)- Ermenî- û Tirkî dihat qisekirin. Dêrsim bajarekî serbixwe û azad bû, piştî 1937'an Dêrsim ket destê dewletê. Bavê min bi herdu zaravayên Kurdî distira. Kalikê min keman û tembûr lêdixist û distira, ew li mala me bûye adet. Ez ji zaroktiya xwe ve distirêm. Gelê Kurd gelekî kevn e û Kurdistan welatekî mezin e, çanda Kurdan gelekî kûr û dewlemend e. Ez jî hozanekî gelê Kurd im, ez dixwazim ji bo hemû gelê xwe bistirêm û hemû gelê Kurd min nas bike. Ji bo min jiyan û pêşveçûna herdu zaraveyan jî pir giring e, ji ber wê ez her tim bi herdu zaraveyan distirêm."

Wek ku tê zanin, bi qasî salek û nîv e ku li Tirkiyê televizyona "TRT6" 24 demjimêr weşana Kurdî dike. Di TRT6'ê de gelek bernameyên muzîkê jî hene, lê hê Alî Baran nebûye mêvanê wê. Li ser pirsa me Alî Baran li ser televizyona TRT6 dîtinên xwe wisa anî ziman: "TRT6 ji bo Kurdan gavek giring e, lê dereng ketiye. Berî 15 salan bibûya gelek balkêş dibû. Lê niha 15 televizyonên Kurdan hene û ew mesela Kurd çareser nake. Heta mesela Kurd çareser nebe ez naxwazim li TRT6 bibim mêvan. Gelê min min nas dike, ez hunermendekî di nav siyasetê de mezin bûme. Di sala 1982'an de dewleta Tirk ez ji hemwelatiyê derxistim, ez li Ewrûpa bûm penaber, sebeb bi Kurdî strangotina min bû. Ji ber ku min stranên Kurdî yên şoreşger û civakî distra, 20 sal min welatê xwe nedît. Divê dewlet heq û hiqûqê miletê Kurd bigre ber çavan, ziman û kultura me azad be ku em jî bi dilekî azad derkevin pêşiya gelê xwe."

Di albûma Alî Baran ya dawî "Çel Awaz"ê de 3 stranên Mahmûd Baran, stranek gelêrî bi navê Leyla heye, yên din hozan Alî Baran bi xwe berhev kirine.

Hozan Alî Baran kaseta yekemîn di sala 1981'an de bi navê "Lo warê" li Almanya derxistiye û piştre, di sala 1984'an de "Deriyê Hepisxane",1987'an de "Ey Dêrsimê", 1989'an de "Helepçe û Zîndan", 1991'an de "Çene Çene", 1993'an de "Destê Ma", 2005'an de "Teberik" û 2010'an de albûma "Çel Awaz" çê dike. Xerciyên kasêt û CD'yan çend konsertên Newrozê yên Baran wek Vîdeo hatine qeyd kirin û ewî çar klîp jî amade kirine.

# Kurdên bênasname bûn mijara belgefîlmekî

Zinar Ala San Sebastian

Belgefîlmek Spanî "Un Pueblo Invisible" ango "Miletekî nexuya" rewşa penaberên Kurd li Herêma Kurdistanê vedibêje. Malbata Selahedîn Bilo, di sala 2006'an de ji Qamişlo reviyabû û berê xwe dabû Herêma Kurdistanê û li kampa Muqublî jiyana xwe di nav konan de domandin. Malbata Selahedîn yek ji qurbanên jimartina awarte ya sala 1962'an e ku bi deh hezaran malbatên Kurd li Rojavayê Kurdistanê ji nasnameyên wan tecrîd kiribûn, ew li Sûriyê wek "Kurdên bê nasname" tên naskirin.

Belgefîlmê herdu rojnamevanên Bask, Borja Portuondo û Karlos Zurutuza, di meha Gulanê de li festîvala bi prestîj a Belgefîlmên Mafên Mirovan Cinestrat li bajarê Valencia hatibû nîşandan. Karlos Zurutuza ji Rûdawê re got: "Me xwest bi vî belgefîlmî em roniyê bidin ser rewşa trajîk a gelê Kurd ê ku di bin zordariya rejîma Şamê de dimîne".

Karlos nekarî fîlmî li Sûriyê çêke, lewma wî berê xwe da kampa Muqubilê ya li parêzgeha Duhokê, cihê ku penaberên Kurdên Sûriyê lê dijîn.

Lê kişandina fîlmê li Kurdistanê jî ne hêsan bû, Hikûmeta Herêma Kurdistanê herdem livandina wan kontrol dikir. Karlos ji Rûdawê re diyar kiribû: Wezîfedar bi behaneya "paraztina penaberan" ji bo kampê hatibû şandin, lê nizanim eger mebesta wan ku em şert û mercên xerab ên penaberan nekşînin.

Li ser rewşa Kurdên penaber li kampa Muqubilê Karlos dibêje:"Ez di sala 2007 û 2008'an de li kampê bûm û niha dîsa min serdana kampê kir, tiştek nehat guhertin. Ew rojnamevan axaftina xwe wiha didomîne: "Min li gel rêxistinên ne hikûmî wek ACNUR'ê têkilî danî. Hem li Şamê hem jî li Spanya, min ji wan re xebata xwe pêşkêş kir, şehadeta xwe, wêne û vîdyo lê wan guhê xwe nedan min. Tekane tiştê posetîv ez pê hatim agahdarkirin ku Berxwedan niha di televîzyonek Kurdî dixebite. Ew jî ji ber ku ew keçek jêhatî ye. Berxwedan Selahedîn sembola berxwedana miletê Kurd e. Belgefîlm bi Kurdî ye û 7 xulkan dom dike. Ji bo temaşe kirina belgefîlm:

***http://vimeo.com/10638447***


Dîmenk ji belgefîlmê "Un Pueblo Invisible" wate"Miletekî nexuya"



# ABC ya stranê

Hekîm Sefkan

Abc ya stranê, yan jî ya melodiyê, dibe ku ji vî navî pê ve ji vê mijarê re nehatibe dîtin. Ez jî vî navî li gora vê mijarê dibînim. Piraniya stranbêjan bi xwe stranên xwe saz dikin, teksta wan, melodiya wan amade dikin. Bi gotinek din, hemû starbêjên me xwe bestekar dibînin, loma jî şaşiyên pir mezin derdikevin holê.

Bê guman, stranbêj dikare stranê biafirîne, lê tenê dema ku di avakirina hevokan de, di ziman de hosta be. Herwiha di hêla melodiyê de jî, divê xwedî hêz û hestên pijyayî be.

Emê wan kêmasiyan deynin hêlekê û emê tenê ABC ya stranê bigrin destê xwe. Carna em di afirandina straneke de karin pir hêsan xwe bixapînin û bêjin; Ev stran pir fereh e. Em ferehbûna wê bi hejmara notayan ve girê didin. Ji (Do) heta (Sî) me bi kar aniye. Lê wek ku min li jor jî got, ji ber ku stranbêjên me bi xwe stranên xwe diafirînin û hemû li ser sazê dixebitin, dibêjin me ji perda jor heta perda jêr bi kar aniye.

Ferehbûna stranê, ne bi hejmara notayan ve, ne jî bi jor û jêra perdeyan ve girêdayî ye, ew raste rast bi harmonî, ritm û xemilandina wê ve girêdayî ye.

Piraniya stranên me çar rêzên gotinan bi qafiyeke wek hev û melodiyek teng in. Sê caran çar û çarek jî ji bo serdorê, muzîka nava herdu perçeyan jî her ew melodiya wan çar rêzan bixwe ye. Sedema vê yekê, pêşî bi zanebûna stranbêj ve girêdayî ye - hewqasî zane-pişt re jî vedigere ser wê yekê ku sê parên stranan li gorî girtina govendê tên amade kirin. Ji xwe li hemû deverên dinyayê bi taybetî jî li Rojhilata Navîn stran a li gorî govendê, teng û hêsan e.

ABC tê wateya ku di hundirê straneké de bêyî ku bingeha xwe wenda bike, carna melodî û ritm bê guhertin, yanî ne tenê li cihekî bisekine. Lê bikaribe bigere, guhdar bi xwe re rake û deyne. Du-sê guhertin tê de hebin.

Wek nimûne, strana Keça Delal ya Mamoste Saîd Yûsiv ku hostayê avakirina strana Kurmancî ye. Ew stran bi dengê Mihemd Şêxo navdar bû. Piştre gotinên wê hatin guhertin û niha bi navê Keça Kurda tê naskirin. Di wê stranê de mirov sê guhertinan dibîne, yanî ABC. Loma jî her arnjorek kare bi rengekî cuda muzîka wê belav bike, tamek din bide wê.

Divê em jibîr nekin tiştê ku di hêle stran yan jî melodî fereh bibe û guhertin tê de pêk bên, teksta stranê ye ku gotin ji hilkişandin û daketinê re ne vekirî be. Bi rastî ne teksta stranê be, pir zore ku mirov karibe behsa ferehbûn û xemla stranê bike.

# Li Almanya mijarên nîjadperestî û cudaxwazî tên nixumandin

**Robîn Botî** Dresden

Annegret Krellner li bajarê Dresdenê navek naskirî ye, bi taybetî ji bo koçber û biyaniyan. Gelek biyanî hawara xwe digihînin Xanim Krellnerê, ew bi zimanê xwe yê şêrîn û bi dilê xwe yê vekirî, di bin banê Navenda Agahdarkirina Gerdûnî de ji bo koçber û biyaniyan kar dike. Di dema xwe ya vala de jî, ew serdana girtiyên biyanî yên li girtîgeha Dresdenê dike. Tevî Almanî û Îngilîzî, ew bi zimanê xwe yê Rûsî, Çekî û Holandî hewl dide ku ji biyaniyan re yarmatî bike û wan zû ji girtîgehê rizgar bike.

Di derbarê integrasyon û biyaniyan de, ew dide zanîn ku "Integrasyon" ji zimanê Latînî û Yunanî hatiye û tê wateya 'hilberîna yekî ji temamî', "Lê integrasyon wezîfeyek mezin a civakî ye; bi vê ve hem mirov xwe bi derdor û civakê entegre dike, hem jî mirov cudahiyên xwe çêtir nas dike."

## "Bêtiriya wan naxwazin ku mijûlahî û karekî wan bi biyaniyan re hebe"

Li ser pirsgirêkên biyaniyan ên li Almanya jî dibêje ku ew dikare bêtir li ser biyanî û koçberên li Dresdenê bibêje ku zanîna ziman, peydakirina kar û xwe entegrekirina nav civakê çend xalên pêşîn in, "Gelek Alman naxwazin ku mijûlahî û karekî wan bi biyaniyan re hebe. Ez hin biyaniyan nas dikim wek nimûne, ev 5 sal in tên dêrê îbadeta xwe dikin, lê nayê bîra dîndarekî din ku ji xwe bipirse, 'gelo ev biyanî kî ye, ji ku hatiye, çi derd û kulên wî hene'. Ev dîmen gelekî dilê min dêşîne."


Annegret Krellner

Em jê dipirsin ka gelo çima gelek biyanî li Almanya peyva entegrastonê wek 'asîmilasyon' fêm dikin, dibêje ku dema kesek bi ser temametiya civakê ve bê her dem di nav civakê de tê pirsîn ka gelo civak ne hazir e ku yekî biyanî di nav xwe de entegre bike. "Dema biyaniyek dibîne ku civak ne hazir e ku wî entegre bike, hingê dest pê dike ku xwe pîçekî asîmile bike. Lê gelek caran mirov dibîne ku civaka mezin ne hazir e xwe bigurîne. Lê ez li ba xwe rastî kesî nehatime ku xwe asîmile kiriye."

Li ser pirsa "Gelo kîjan biyanî zûtir xwe li vir entegre dikin" jî, behs dike ku biyaniyên ji tiştên nû re vekirî xwe zûtir entegre dikin, "Kesên ku zû dikevin têkiliyê, kesên ku bi pirsan ve xwe nadin paş, kesên ku di meseleya ziman de çalak bin zû bi ser dikevin. Helbet gelek hêsan e ku mirov di nav gundî, welatî û hemşehriyên xwe de bijî û tevbigere, lê tiştê zor ew e ku mirov di nav civaka Alman de li gorî xwe kes û grûpan ji xwe re peyda bike û ciyê xwe di nav wan de çêke."

## "Gelek biyanî ji civak û civatên gelekî teng berê xwe didin Almanya"

Li ser hin êrîşên ku li Sachsenê li dijî biyaniyan dibin jî Xanim Krellner difikire ku nîjadperestî li Dresdenê xurttir dibe. "Mijarên nîjadperestî û cudaxwazî têne nixumandin. Entegrasyon li vir xirab çêdibe û pê ve bûyerên nexweş rû didin. Çawa ku ez ji hişmendiya Rûsî fêm dikim, ev encam didin dû hev: Gelek biyanî ji civak û civatên gelekî teng berê xwe didin Almanya. Li vir destûra gelek tiştan heye, lê biyanî nema dizanin bê sînorê civaka vir çi ye, çawa ye."

## "Kurd dikevin ser rêyên dirêj û pişta hev digirin"

Annegret Krellner car caran bi pirsgirêkên Kurdên koçber ve jî mijûl dibe. "Pirsgirêkên Kurdan jî wek koçber û biyaniyên din in, lê tiştê ku li xweşiya min diçe ev e ku Kurd di çalakiyên wek Newrozê de dikevin ser rêyên dûvedirêj da ku bigihîjin hev û pişta hev bigirin. Tiştekî din jî ku kêfa min tîne ev e ku Kurd xwe ne ji Îraq û Tirkiyê didin naskirin, lê xwe ji parçeyên xwe didin naskirin."

# Ciwan daxwaza hişyariya seksî ji Meleyan dikin

**Barzan Mihemed** Hewlêr

Elî Brahîm ê 24 salî bi pêwîst dizane ku meleyên mizgeftan di xutbeyên rojên înan de behsa perwerdeya seksî bikin. Bi baweriya Elî seks aliyekî jiyana mirovan e, lê li Herêma Kurdistanê bûye pirsgirêka herî mezin a ciwanan: "Ciwan nikarin rûbirû ji îmam û pîran bipirsin, ez bi xwe jî nikarim van pirsiyaran bikim."

Li gor lêkolînek navenda El-Muslime û Rêxistina Nîroj ku tê de pirs ji 135 meleyan hatine kirin û pirsiyarek dibêje "Hûn di gotarên xwe de behsa perwerdeya seksî dikin?". Ji sedî 17.03'ê melayên beşdar gotine ku ew bi awayekî zêde behsa wê dikin, ji sedî 44.44 jî gotine ku ew bi awayekî kêm behs dikin û ji sedî 39.29 jî gotine ew bi ti awayan behsa hişyariya seksî nakin. Lê ciwan dixwazin ku beşek gotarên roja înê ji bo behiskirina perwerdeya seksî bin. Li gor hinek mamosteyên olî divê behsa van meseleyan bê kirin, lê beşek din vê yekê red dikin

Bi baweriya meleyê mizgefta Hacî Cemal, Seyid Ehmed Evdilwehab, dibe behsa perwerdeya seksî di xutbeyan de bê kirin, lê divê bi rengekî aram û li gor şerîeta ola Îslamê be: "Divê îmam di xutbeyan de behsa perwerdeya seksî bikin da ku ciwan bi awayekî dirust fam bikin, ol jî bi awayekî eşkere û bê mezin kirin behsa van pirsan dike." Dr. Mihemed Gezneyî jî dibêje ev tişt ne dirust e: "Nabe di mimberên mizgeftan de mirov hawar bike û behsa seksê bike, karekî ne di cih de ye û nabe bê behis kirin; lê ger xelkê pirs kir bila mamosteyên olê bersiva wan bidin."

Seyid Ehmed dibêje, divê bi awayekî pir bi wate behsa perwerdeya seksî bê kirin da ku ciwan sûdê jê wergirin û hawara xwe bi mebesta dagirtina valahiya ku li ba wan dirust bûye, nebin ba rêyên ne rewa: "Divê îmam bersiva hemû pirsiyarên ciwanan bidin." Hê Seyid Ehmed di xutbeyên xwe de, behsa perwerdeya seksî nekiriye, lê li ser ekranê û di civînan de, li gor ku pêwîst dike behsa van meseleyan kiriye: "Ola Misilmantiyê bi awayekî eşkere û bê perde behsa van aliyan kiriye."

Beşek ciwanan şermê ji mamosteyên olê nakin û gelek pirsên li ser perwerdeya seksê ji wan dikin. Ferman Osman ê 26 salî dibêje ciwanan li mizgeftên Hewlêrê pirsên wiha ji meleyan dikirin û wan jî bersiv didan: "Ciwanan pirsên xwe li ser kaxezê didan mele û wan jî bersiv didan."

Bi dîtina Gezneyî, ger ciwan nikarin rûbirû pirsan ji mamosteyan bikin, dikarin bi rêya mobile; "gelek pirsan ji mamosteyan bikin."



# Jinên Ereb ciwanên Kurd nehiştin

**Taman Şakir**



Ev du sal bûn min serdana Almanya nekiribû, min nizanîbû di nav Kurdên welatê minî duyem de çi diqewime û behsa çi tê kirin. Min hinek axaftinên ecêb ji wan bihîstin. Hinekan di got rast e li Kurdistanê pere zêde ne, lê em venagerin Kurdistanê, êdî me jinên Ereb anîne û emê herin mala xezûrê xwe. Dema tu ji wan dipirse çima we jinên Ereb anîne, dibêjin taqeta me nîne em jinên Kurd bînin.

Niha hejmarek zêde ya xortên Kurd li Ewrûpa berê xwe didin Bakurê Efrîqa û li gel jinên Efrîqî dizewicin. Bi baweriya wan, jinên bakurê Efrîqa ji jinên Kurd baştir in û bi taybetî ku perên kêm li ser guhaztina wan tên mesref kirin û dê û bavên wan daxwaza mehr û zêrên pir nakin. Jinên wan jî ji jinên Kurd bêtir xizmeta mêran dikin, di nav nivînan de jî germ û gurtir in, piraniya wan zimanê Fransî dizanin û kulturê Fransî bandor li ser wan kiriye, giringiyê nadin wê yekê ku zarokên wan bi Kurdî bizanin yan na. Bi axavtina wan be: Zarokên Kurdan pir in, li welat li her taxekê bi sedan zarok li kolanan dilîzin.

Hevalekî ku nû jinek Mexrîbî `Ji Fasê` aniye digot, bavo bi xwarina `Kuskus`an dewlemend bûme! Wek ku li Kurdistanê qirîza savarê hebe. Erê ma kes bi qasî Kurdan savarê dixwe, lê cudahî di wê yekê de ye ku Kurdan navekî wek `Kuskus` li savarê nekirine.

Heta vir jî ti pirsgirêka me tune, xelk azad in çawa û li gel kê di zewicin. Herdem, li gel wê yekê me ku xelk azad bin û bikarin bi azadî biryara jiyana xwe bidin. Lê bi mercê ku sînorên kesên din derbas nekin, lê hevalên ku malên xezûrên wan Mexrîbî, Tûnisî û Cezayirî ne, rexneyên tund li jina Kurd digrin û bi baweriya wan jinên Kurd nazikî û giraniyan dikin, nirxê wan giran e û gelek pere li ser anîna wan ji bo Ewrûpa tên xerckirin, wek jinên Ereb jî nikarin xizmeta mêran bikin. Lê wan hema carekê jî pirsiyar ji xwe nekirine ewa ku ji jinek biyanî re dikin, ji jinek Kurd re jî dikin? Bê guman na. Pêtiriya mêrên Kurd li Ewrûpa rêz li hemû jinan tînin ji bilî jina Kurd. Hemû tiştî ji jinên biyanî re dikin, lê ger jinên wan Kurd bin, çaverê dikin tenê ew xizmeta wan bikin.

Li Kurdistanê jî heman çîrok e, mêrên Kurd ên ku bi jinên Ereb şaş dimînin pir in. Herwiha hinek ji wan bi awayekî dizî û nehênî jinek Ereb mehr dikin. Mijar wiha lê hatiye ku jinên Ereb cihê jinên Kurd digrin, wek ku çawa Ereban di warê çandî, olî û siyasî de jî ew dagîr kirine. Êdî tên ku kurên me jî dagîr bikin.

Jinên Ereb ji asiman nehatine xwarê û ne wek jinên Kurd jî xweşik in. Lê jinên Ereb di nav nivînan de azadtir in û dikarin bi kuskus û kuskus zik û binzikê mêrên xwe têr bikin, loma taqeta hinek mêrên Kurd nîne ku jinên Kurd bînin.

*Kuskus, li seranserê welatên Mexrîba Erebî, wek Fas, Cezayir, Lîbya xwarinek navdar e. Hinek nîşanên seksî jî di navê vê xwarinê de hene, ji ber nêzîkîbûna navê xwarinê li gel navê alava zayendî ya mê, jinan.

# Ezê ji bo Kurdên derveyî PKK'ê tevgerekê ava bikim!

Osman Öcalan dibêje ku ji sedî 75'ên Kurdan li derveyê PKK'ê ne. Armanca min ew e ku ez bi tevgera xwe ya Lîberal-Parêzgar xwe bighênim wan kesan



(Wêne: Rûdaw)

**Osman Öcalan niha li Başûrê Kurdistanê dijî**

*Li ser rêya di navbera Hewlêr û Koyê de, servîsêrê rojnameya Rûdaw kak Ako, ku ez, ew û Hêvîdar em bi hev re di otomobîlê de bûn, got, "Çi pirsê bikî Osman Ocalan bersiva wê dide, ji ber vê yekê hevpeyvînên li gel wî bi kêf derbas dibin..."*

*Dema ku otomobîla me derbasî hewşa mala wî bû, Osman Ocalan li baxçeyê mala xwe li ber derî, bi rûkenî hat pêşwaziya me.*

**Kek Ferhad, di nava axavtina te de gelek caran gotina "serok" derbas dibe, mebesta te ji "serok" çi ye?**

Hinek tişt hene realîte ne. Di bizava netewa Kurd de, serok derketine, halî hazir serokê Kurdan yê herî bi temen Mam Celal e, kek Mesûd e, Abdullah Ocalan e. Ew xwediyê statuyek seroktiyê ne. Divê mirov wê realîteyê qebûl bike û bîne zimên. Tu hez bikî, hez nekî Apo jî di nava serokên Kurdan de, serokek e.

**Yanî tu wek rêkxistinekê serokê xwe nabînî?**

Na, wek rêkxistin wî serokê xwe nabînim.

**Em gelek caran di medyayê de dixwînin, ha îro, ha sibe Osman Ocalan vedigere Tirkiyê. Ji bo vê yekê ti projeyek te heye?**

Bêguman ne bê proje me. Armanca min birêvebirina siyasetek netewî ye. Xebat jî bi du rengan tê kirin, yek karê siyasî ye, yek jî karê eskerî ye. Di nerîna min de êdî ji bo Kurdên Bakur pêwîstî bi xebata eskerî nemaye. Wek em dizanin hejmara Kurdan nêzîkî 40 mîlyonî ye, nîvê Kurdan li Kurdistana Tirkiyê ye û her ku diçe jî hejmara Kurdan li Tirkiyê zêde dibe. Ez di wê baweriyê de me ku li Tirkiyê hêzek siyasî mezin durust dibe. Heta niha ji sedî 25 ji Kurdan di nava tevgera siyasî de ne.

**Armanca te ji vegerê çi ye?**

Wê potansiyela mezin bixim nava bizavek siyasî.

**Ji bo wê xebatê, te li vir tiştek nekir?**

Na, min nexwest li derveyî Kurdistana Tirkiyê hêzek siyasî birêve bibim.

## "Ez naxwazim li ser mîras û potansiyela PKK'ê xebatê bikim."

**Wê PKK rê bide ?**

Siyaseta ku bi rêdanê bê kirin, nekî baştir e. Ez naxwazim li ser mîras û potansiyela PKK'ê xebatê bikim. Min got, gelê ku ji PKK'ê re dibêje erê ji sedî 25, ezê di nava ji sedî 75'an de xebatê bikim û wan bigihînim nava şoreşê. Li ti welatan xebata di nava ji sedî 25'an de encamek baş nade. Ezê xetek muhafezekar û demokrat bimeşînim. Di nava AKP û partiyên din de kesên Kurdperwer jî hene, ezê xwe bigihînim wan jî. Dibe ku ji nava PKK'ê jî hinek bên nava xebata min, lê bi giştî çavên min ne li xebat û mîrasa PKK'ê ye.

**Emê kengî Osman Ocalan li Bakur bibînin?**

Min 6 mehan berî Hikûmeta Tirkiyê behsa pêvajoya demokratîkbûnê kiribû. Wê demê hîn hikûmetê dest bi pêvajoyê nekiribû. Çûna min jî girêdayî vê pêvajoyê ye.

**Gelek rojnamevanên Tirk hatine cem te, kesekî ji te re ji hikûmetê di derbarê vegerê de ti mesajek anî?**

Gelek televîzyon û rojnameyên Tirk hatin cem min. Hasan Cemal hat, piştre gelek kesên din jî hatin. Gelekan ji wan mesajên wiha dida, weke ku ji dewletê ew mesaj anîbin. Nerînên me digirtin. Ez pê dihesiyam ku hinek ji wan ji aliyê dewletê ve hatine lê di bin navê rojnamevaniyê de.

**Yanî kesek bi resmî bi navê dewletê nehate cem te?**

Na.

**Ez wiha fêm dikim ku tu êdî li sîlehê venagerî?**

Ez ji bo Kurdan sîlehê heram nakim, nabêjim tiştekî heram e, yan jî xerab e. Eger mecala xebatek sivîl hebe, pêwîstî sîlehê nake. Lê eger ji bo xebata siyasî ti mecalek nema û Kurd mecbûrî sîlekê bûn, mafê Kurdan heye carek din şerê çekdarî bimeşînin. Bi şêwaza IRA yê. Ji bo vê jî 150 çekdar bes in. Dema ku ez di nava PKK'ê de bûm jî, ez li gel bûm ku gerîlayên bajaran bên xurtkirin, yên çiyan jî her demê amade bin. Ji bo vê yekê ez dibêjim, dema şerê gerîlla li çiyan nemaye.

## Ergenekon: "Hinek jî heta niha di nava seroktiya PKK'ê de ne."

**Tê gotin ku di avakirina PKK'ê de destê Ergenekonê hebû. Kadroyên kevin yên PKK'ê vê yekê red dikin, tu çawa dibînî?**

Serokê PKK'ê birêz Abdullah Ocalan bi xwe jî tîne zimên, dibêje di destpêkê de dewletê xwest dest bavêje nava PKK'ê, yek ji wan jî Pîlot Necatî ye. Abdulrehman hebû, xelkê Agirî bû, hinekan xwe paşve kişandin, hinekan jî berdewam kirin. Hinek jî heta niha di nava seroktiya PKK'ê de ne.

**Wek kê?**

Binere ezê bêjim: Di zindanan de serokên PKK'ê dest bi birçîbûna mirinê kirin. Kesekî wek Karasu heye (Mustafa Karasu), dema ku rewşa wî xerab bû, dewletê got, em daxwazên we bi cih tînin. Ew berî 3 salan ji hukmê xwe serbest hat berdan. Balkêş e, dibêjin di bin îşkencê de Karasu negotiye "ax" jî, ez ji wî bawer nakim. Çi însan be, dema ku lêdan lê bibe, diqîre, digirî, dike ax û hawar jî, însan ne kevir e. Dibêjin Karasu hawar jî nekiriye. Ew ne kevir e, ne jî herrî ye. Xuya ye dewletê ew derxistiye pêş. Şoreşgerên mezin jiyana xwe di zindanan de ji dest dan, Karasu derkete pêş. Karasu nûnerê xwe jî şand derve. Dema ku Mehmet Şener hat kuştin, Karasu derket û hat nav PKK. Karasu hewl da ku xebatê lawaz bike.

## "Pesindana Kemalîzmê bû sedem ku ez ji PKK veqetim"

**Tu pir diçî ser Karasu...**

Na, lê Karasu xwe sosyalîst dibîne, ne kesekî sosyalîst e. Ew di nava PKK'ê de nûnertiya Elewiyan dike. Ji welatperwerekî zêdetir, Karasu Elewî ye û wek dedeyekî Elewiyan tevdigere. Ez heqê Apo naxwim, di 98 de gelek caran ji min re gotiye, "kê ji we re gotiye kar bidin Karasu... bila Karasu bikeve odeyekê, bixwe, vexwe, biaxive, lê bila kesek li wî guhdar neke".

**Tu dibêjî pêwendiya Abdullah Ocalan li gel dewletê tune bû?**

Birêz Abdullah Ocalan birayê min yê mezin e. Em bi riya xwînê jî digihên hev. Ji ber ku pesnê Kemalîzmê da, ew bû sedemek ku ez ji PKK'ê cuda bibim. Eger ez bizanibim tiştekî wiha heye, ez berî her kesî xwe berpirsiyar dibînim ku bînim zimên.

**Wek bira, lê wek siyasetvan?**

Wek welatparêzekî Kurd. Girtina Apo li Kenya û anîna wî ji bo Îmralî, ez dikarim bêjim projeyek Ergenekonê bû.

**Ocalan dema ku hat girtin, sedî sed hate guhertin, bû Ocalanekî din, tu vê yekê çawa dinirxînî?**

Apo li dijî dewletê şer kir. Dema ku hat girtin, ket nava panîkekê, tirsiya ku bê îmhakirin. Wî ji bo xwe, bi awayekî taktîkî guhertinek di xwe de çêkir. Dikarim bêjim, ji parastina netewî zêdetir, wî xwe parast, parastina wî parastinek şexsî bû.

**Niha li vê derê bi tenê dimînî, ji PKK natirsî?**

Di salên 2004, 2005 û 2006 de xeter hebû. Piştre min bang li Seroktiya PKK'ê kir ku dawî li kuştinên di nava xwe de bîne. Wan bangên min encam dan. Kuştina herî dawîn Kanî Yilmaz bû (2006), piştre kuştin nekir.

**Ji ber ku tu birayê serokê PKK'ê bûyî, PKK nêzîkî te nebû?**

Her tişt rola wê heye. Min ti caran nexwestiye dijmaniya PKK'e bikim. Ji xwe dema ku em cuda bûn, armanca me ne ew bû ku em dijîtiya Apo bikin, me xwest em xebatê bi şeklekî din bikin. Hevalên ku em bi hev re cuda bûn, piştre îstîxbarat kete nava wan û dest pê kirin dijîtiya PKK'ê bikin.

**Îstîxbarata kuderê?**

Hemû Îstîxbarat, ya Tirkiyê, ya Îranê, ya Kurdan... min jî got kesên ku dijîtî kirine negihiştine ti encaman, ji Semîr bigir heta bi yên din. Min got, ez ne ji bo dijmintiyê heme, ez ji bo xizmeta welatê xwe heme. Çi Apo dibe, çi jî PKK, ez ne hazir im, dijmintiyê bikim. Wan biraderan jî li ser dijmintiyê îsrar kirin. Riya me ji hev cuda bû. Ez ji wan cuda nebûm.

## "Min 90 hezar Euro û 3 hezar Dolar bi xwe re birin"

**Dibêjin tu li Kurdistanê dewlemend bûye?**

Na, ne rast e. Piştî evqas xizmet min nikaribûye 3 mehan kirêya xaniyê xwe bidim. Piştre ez rabûm min ji hinek dostên Kurdistana Rojhilat alîkarî kom kir. Wan (grûpa li gel Nizamettin Taş) xiyanetek mezin bi min kirin.

**Te ji PKK'ê çiqas pere bi xwe re bir?**

90 hezar Euro û 3 hezar Dolar min bi xwe re birin. Min ji wan peran 25 hezar Euro da Xidir Sarikaya. Wê ji bo karê bizava ku hatibû avakirin, karê ticarî bikira, lê çû ew pere xwarin. Bi pereyên din jî me 6 mehan heval xwedî kirin. Mesref çêbû, me mal ji bo hevalan kirê kirin... me eşyayê male kirî... xwarin vexwarin û mesrefên din. Ez dikarim qirûş bi qirûş hesab bidim. Dema ku kurê min yê yekemîn Firat ji dayîk bû, min 2 hezar Dolar li wî mesref kir. Min ji bo xwe pere nebirin. Ew gotinên ku dibêjin ne rast in.

**Hevpeyvîn:**
**Dilbixwîn Dara**

# Îran ”Plana Paqijiyê” destpê dike

## Sezaya darayî ya jinên mûxalîf digihe 800 Dolaran



**Rewşa jinan li Îranê girantir dibe**

Di çarçoveya kampanya bi navê “Plana Paqijiyê”, Hikûmeta Îranê biryar daye ji bo girtina jinên ku ”Cil û bergên ne hêja” li xwe dikin, hêzên polîsan li hemû navçeyên Tehranê belav bikin. Kampanya di demekê de ye ku serokên Tevgera Kesk alîgirên xwe dehif dide ji bo lidarxistina xwepêşandanan di salvegera hilbijartinên serokayetiya komarê de. Li gor rexnegiran ev kampanya hestên nerazîbûnê germ û gurtir dike.

Muhafezkar û alîgirên wan li Îranê dibêjin hîcaba ”ne hêja” û ”ne Îslamî” mijareke ewlekarî ye û bi awayekî yekser tehdîtê li bingehên Komara Îslamî dikin. Wezîrê Navxwe yê Îranê soz daye ku ji bo “Ferzkirina cil û bergên hêja” ew ê kampanyek ji bo cîbicîkirina “Plana Paqijiyê” birêve bibe.

Hêzên polîs dikarin li gor vê planê her jineke ku mantoyê dirêj ne lê be û tevahiya laşê wê ne nuxamtî be, bigirin. Çavkaniyên agahdar dibêjin, sezaya darayî ya jinên ku bi vî awayî bên girtin, digihîje 800 Dolaran.

Li gor çavdêrên navxwe yên Îranê, ev plana nû beşek ji kampanya tirsandinê ye ku ligel nêzîkbûna salvegera hilbijartinên serokayetiyê ji aliyê Hikûmeta Îranê ve tê meşandin. Opozîsyona navxwe ya Îranê ku xwe di Tevgera Kesk de dibîne, dewra niha ya Serokayetiya Mehmûd Ehmedînejad ne rewa dibîne û bi baweriya wê sextekarî di encamên hilbijartinan de hatiye kirin, loma tê çaverêkirin ku di salvegera yekem a van hilbijartinan de meş û xwepêşandan li bajarên mezin ên Îranê bên lidarxistin.

Li gor yasayên Îranê, divê jin li derveyî malê serê xwe bi awayekî tevahî biposin û cilên dirêj li xwe bikin, lê yasa bi tevahî ne ron û zelal in. Li Îranê du rengên hîcabê hene ku navê yekê ji wan hîcaba Îslamî ye û ji eba û mantoyeke reş û dirêj pêk tê û jinên alîgirên rejîma Îslamî ya Îranê wan li xwe dikin. Lê gelek jinên din van cilan li xwe nakin û mantoyên rengîn û kurt li xwe dikin, makyaja xwe eşkere dikin û nîvê serê wan qot e û ji bin serpoşa wan derdikeve derve. Ev keçên wiha, ji dema ku Ehmedînejad dest bi karê xwe kir, herdem ligel grubên parastina exlaqan rastî pirsgirêkan tên û pir caran tên girtin û malbatên wan tên agahdarkirin.

# DYA rawestandina keştiyê mafê Îsraîl dibîne

Alîkarê Serokê DYA, Joe Biden, anî ziman ku mafê Îsraîlê heye keştiyan bide rawestandin. Biden di axatina xwe de daxuyand ku “Çi metirsiya çûnyîna Gezzeyê heye? Îsraîl karibû kelûpelên alîkariyê li keştîgeha Aşdotê de vala bikira.”

Biden li televizyona PBS di bernameya "Charlie Rose Show" de bersiva pirsên li ser Îsraîlê da. Biden anî ziman ku mafê Îsraîlê ji bo kontirolkirina kelûpelên di keştiyan de heye û wiha domand, “Hûn karin nîqaş li ser pêdiviya destekariya leşkerên Îsraîlê bikin, lê bi rastî Îsraîl bi Hamasê re di nava şerekî dijwar de ye û mafê Îsraîlê heye ku bizane di wan keştiyan de çek heye yan na. Mafê Îsraîlê heye ku ji bo ewlekariya xwe hewl bide.”

Çi metiriya çûnyîna Gezzeyê heye?

Biden di axaftinê xwe de behsa daxuyaniya Îsraîlê jî kir û got ”Îsraîl got,’fermo’ hûn li deryaya spî ne, eger ku hûn hinek ji aliyê bakûr ve biçin, hûn dikarin barê xwe vale bikin û emê jî van têxin Gezzeyê.’ Çi pirsgirêk li wir heye? Cima ji bo çûnyîna Gezzeyê wisa îsrar dikin? Îsraîl dibêje ku,’ez nizanim di wan keştiyan de çi heye? Hamas li ser gelê min 3 hezar bombe avêt.’ Ev gotin jî rewaye.”

Bila aliyên navnetewî jî tevlî lêpirsînê bibin

Biden di derheqê lêpirsîneke zelal û alînegirtî de jî got ku rêvebiriya Barack Obama bi her awayî wê alîkariyê bide. “Lê divê hin aliyên navnetewî jî tevlî vê pêvajoyê bibin û di lêpirsînê de hevkariya Îsraîlê bikin.“

Ji bo kelûpelên alîkariyê em zexta li ser Îsraîlê dikin

Biden got ku rêvebiriya Amerîka ji bo alîkariya Gezzeyê zextên mezin li ser Îsraîlê dimeşîne “Ji bo ku Îsraîl destûra kelûpelên avahiyê û alîkariyên mirovî bide, em ketine hewldanên diyalogê.”

Ti kes wek rêvebiriya me alîkarî neda Îsraîlê

Biden têkiliyên DYA û Îsraîlê jî nirxand û got, “Hinek kes dibêjin ku têkiliya DYA û Îsraîlê deriziye, lê ez tevlî wan ramanan nabim. Bi Hikûmeta Îsraîlê re car caran ramanên cuda çêdibin, ev tişt her tim heye, lê ez dikarim bibêjim ku ti kesî wek rêvebiriya me alîkarî nedaye Îsraîlê.”

**Daxuyaniya Rêvebirê Veqfa Alîkariya Însanî ji bo Filistînê**




# Divê BP dest bavêje bêrîkê



**Amerîka 69 miliyon Dolar ceza da şîrketa BP**

Pisporên petrolê li ser rawestandin û pakijkirina petrola ku li kendavê Meksîkayê diherike, dixebitin. Piştî teqîna borî û lûleyên petrolê, zirarek mezin gihabû behra kendava Meksîkayê û metirsiyek mezin derketibû holê. Ji ber vê sosretê, şîrketa petrolê BP ket nav tirsa ku bi milyon doleran ceze û curmek mezin bide.

Di derbarê pakkirina bendava Meksîkayê de Serokê Amerîkayê Barack Obama di bernameyek televizyonê de nerazîbûna xwe anî zimên û şîrketa BP ji vê felaketê berpirsiyar girt.

Derbûna petrolê ewqas mezin e ku ziyanek mezin daye derya û xwezayê. Herweha roj bi roj petrola ku herikîye nava behrê, xwe digihîne sînorên Amerîkayê jî. Ev jî tê wateya xerckirina pereyekî mezin û Amerîka ji bo destpêkê 69 milyon dolar ceze li şîrketa BP birrî.

Di vê derbarê de Berdevkê Qesra Spî Robert Gîbbs, da zanîn ku wan ev curma yekem ji bo ku zirarek mezin daye derûdorê û ji bo kêmkirina ziyanê li şîrketa BP birrîne.

Şîrketa BP niha di nav hewldana saxlemkirina borî û lûleyên petrolê de ye. Her ku di xebata xwe de xeletiyekê bike, barê wê girantir dibe û cezeyên mezintir lê zêde dibin. Li gora pisporên petrolê dibêjin, derbûna petrolê wê di nava sê salan de bi 37 milyar dolaran ji şîrketa BP re bibe mal. Pispor dibêjin:“Tenê ji bo pakijkirina betrola ku herikiye nav behrê wê 15-23 milyar dolar xerc bibe“.

Piştî teqîna boriyên petrolê, rojê 19 hezar varîl petrol diherike kendavên Meksîka û Amerîkayê. Heta niha bi şêweyê pakijkirinê, 6 hezar varîl petrola herîkî berhev bûye. Ji bo paraztina lêmanên Amerîkayê, bi dirêjahiya 1300 kîlometro bergir hatine çêkirin û ji bo rawestandina herka petrolê, 17.500 leşgirên Amerîkî bin şev û roj dixebitin.

# Parlamenterê Partiya Sosyalîst daxwaza dengên Kurdan dike



**Harry Van Bommel**

Di hilbijartinên ji bo Parlamena Holanda ku wê di 9’ê Hezîrana 2010’an tên lidarxistin, parlamenterê Holandî û dostê Kurdan Harry Van Bommel bi wêya geşbîn e ku Kurdên daniştvanên Holanda deng jê re bidin û daxwaz jî kir ku eger deng jî nedin wî, di hilbijartinê de beşdariyê bikin û deng bidin partiyên çep.

Van Bommel ku çend car di civînên Parlamena Holanda de piştgiriya Kurdan kiriye, Endamê Partiya Sosyalîst a Holanda ye û ji sala 1998’an ve Endamê Parlamena Holanda û berpirsê dosya derve di parlamena wî welatî de ye. Navbirî wek piştgirekî xurt yê gelên çewisandî hatiye naskirin û gelek giringiyê dide gelên wek Kurd, Tîbet û Milukan. Hêjayî gotinê ye ku di piraniya çalakiyên ku Kurdên niştecîhên Holanda li dar dixin, Harry Van Bommel beşdar dibe.

# Kurdîstanê Başûrî bendawan virazeno



Kurdîstanê Başûrî serê heme çemanê xo de bendawan virazeno

**Hewlêr (Rûdaw) -** Goreyê ke keyepelê PUKmedya dano zanayene, îdarekerdoxê umûmî yê bendaw û embaranê awe yê wezaretê zîretî û çimeyanê awe yê Kurdîstanê Başûrî Ekrem Ehmedî beynatanê xoyê çapemenîye de dayo zanayene ke do Kurdîstanê Başûrî de des bendawî bêrê viraştene. Ekrem Ehmed dayo zanayene ke, çarçewaya bendawanê ke Kurdîstanê başûrî de virazîyenê de do hîrê bendawî mîyanê sînorê wîlayetê Silêmanîye de, panc bendawî mîyanê sînorê wîlayetê Hewlêrî de û di bendawî zî mîyanê sînorê wîlayetê Duhokî de bêrê viraştene. Seba hîrê bendawanê derûdorê Silêmanîye 50 mîlyar dînar ameyo abirnayene. Bi nê her hîrê bendawanê Silêmanîye do 40 mîlyon m$^3$ awe bêro kom kerdene.

Îdarekerdoxê awdane û awa sererdî yê Germîyanî Şêrko Mehemedî zî da zanayene ke çarçewaya viraştişê bendawanê Kurdîstanê Başûrî de qerar ameyo girewtene ke şeş bendawî zî mîyanê sînorê îdareyê Germîyanî de bêrê viraştene. Îdareyê Germîyanî nika ra lebitîyêno ke seba awankerdişê nê bendawan projeyan virazo û dima zî do seba viraştişî butçe amade bikero.

# Sedemê saxlemîya Sedê Çînî eşkera bi



Sedemê saxlemîya dêsê Sedê Çînî ardê birincî yê

Çîn ra profesorê kîmya Zhang Binjian netîceyê cêgirayîşê ke Sedê Çînî ser o kerdo eşkera kerd. Profesor Zhang Binjianî da zanayîş ke qismê dêsê Sedê Çînî ke zevmanê Xanedanîya Mîngî de virazîyayo, xercê mîyanê kerrayanê dêsî ardanê birincî yê zeliqokan û tozê kirêcî yê veşayî ra virazîayo. Çunke ardê birincî yê zeliqokî bi hawayêko pêt kerrayan pêra dusnenê. Coka hetanî ewro mîyanê kerrayan de tu vaş zî zergun nêbîyo.

Profesorê Unîversîteya Zhejiangî ya Çînî Zhang Binjianî meqaleya xo ya ke kovara Cemîyetê Kîmya yê Amerîka de weşanaya de vano, "Xercê dêsî têkelîyêka xususî ya madeyanê organîk û înorganîkan ra virazîyayo. Madeyê amilopektinî ke mîyanê ardanê zeliqokan yê birincî de yo, madeyo organîk yê xercî yo. Herîra ke ardanê zeliqokan yê birincî ra amade bîya, dekenê mîyanê xercê kalsîyum û karbonatinî. Sayeyê madeyê amilopektinî de xercê mîyanê kerrayanê dêsî saxlemêr beno. Dêsê sedî bi no qayde hetê fizîkî ra pêt bîyo û hetanî ewro wina saxlem mendo."

Asyaya Rojhelatî de keşfkerdişê nê xercî, yanî ardanê zeliqokan yê birincî ra viraştişê xercê dêsî, o wext keşfêko teknîkî yo tewr muhîm bîyo. Coka Xanedanîya Mîngî ke mabeynê seranê 1368-1644 de Çîn de hukm kerdbi, nê dewrî de tirbê mezelan û quleyê ke virazîyayê sayeyê nê xercî ra vera erdlerz û afatanê tebîîyan de xovero dayo û wina saxlem hetanî ewro payanî ra mendê.

Vanê, o wext seba mirdkerdişê bi hezaran karkeran û seba viraştişê nê xercê taybetî, împaratorîye ferman vila kerdo ke ramitişê birincî bêro zêdnayene. Coka hetê başûrê welatî de ke uca birinc ramîyêno, rîyê nê fermanî ra mîyanê şarî de bêhuzurîye virazîyaya.

# Qatîlanê Engîn Çeberî rê cezaya muebedî



Engîn Çeber

**Îstanbul (Rûdaw)** Mehkemaya Çarêsine ya Bakirkoyê Îstanbulî derheqê bi îşkence kiştişê Engîn Çeberî de cezaya muebedî da çar kesan.

Engîn Çeber û hîrê embazê xo roja 28.09.2008 de gama ke yew kovare vila kerdêne hetê polîsan ra tepişîyaybîy. Engîn Çeberî verê qereqolê polîsan de, dima zî, Hepisxaneyê Metrîsî yê Îstanbulî de netîceyê îşkence dîbî. Dima roja 10.10.2008 de nêweşxaneyê Şişli Etfal Hastanesi de îşkence ra merdbi. Engîn Çeber şarê Xorxolê Çewlîgî bi, gama ke merd 29 serre bi. Fîlmê îşkencekerdişî ke bi Engîn Çeberî bîyêne çapemenîye de vila bibîy. Wezîrê Edaletî yê ê wextî Mehmet Ali Şahinî zî naye ser o îşkence qebul kerdbî û ozrê xo waştbi.

Naye ser o derheqê 60 kesan de dewa abîbî. Mehkemaya Çarêsine ya Bakirkoyê Îstanbulî celseya peyêne ya mehkemekerdişî ke roja 01.06.2010 de virazîya, cezaya muebedî da çar kesan.

Mehkema de mudîrê diyine yê Hepisxaneyê Metrîsî Fuat Karaosmanoğlu û qerdîyanan ra Nîhat Kızılkaya, Selahattin Apayadın û Sami Ergazî cezaya girankerdîye ya muebedî girewte la dima hakimê vera mehkema de halê înanê holîye sedem nîşan da û cezaya girankerdîye ya muebedî tada kerde cezaya muebedî.

Mehkema polîsanê qereqole Mehmet Pek û Abdulmuttalip Bozyelî rê zî seba ke bi Engîn Çeber, Cîhan Gün, Uzgur Karakayî Aysu Baykal îşkence kerdo her yewî rê hewt serrî û şeş aşmî ceza da. Hewna, qardîyananê Hepisxaneyê Metrîsî Murat Çise û Yavuz Uzunî rê zî seba ke bi Engîn Çeber, Cîhan Gün û Uzgur Karakayî îşkence kerdo her yewî rê hewt serrî û şeş aşmî ceza da. Hewna, mehkema doktorê hepisxaneyî Yemlîxa Söylemezî rê zî seba ke "ewraqê sexteyî viraştê" hîrê serrî ceza birna.

Mehkema qardîyan Yusf Gayır, Cuma Kaçar, Turan Günaydın û Muharem Çeliki rê seba ke wezîfeyê xo îhmal kerdo panc aşmî ceza, serekmemur Nevzat Kayım, Oncay Bozo û Mehmet Polatî rê qesten birîndarkerdiş ra panc aşmî, Erdoğan Coşadereli û Nurî Atalay ke wezîfeyê xo îhmal kerdo rê panc aşmî, binefser serekçawîş Abdulkadir Öztekinî rê qesten birîndarkerdiş ra panc aşmî ceza birna. Mehkema seba 39 kesan zî qerarê beratî da.

# Kirdkî de kitabêna

Kulîyatê Rîsaleyê Nûrî yê Bediuzeman Seîdê Kurdî ra Vateyê Qijkekî ke verê cû tirkîya Osmanî ra tercumeyê lehçeya kurmanckî bibîy, Serdar Bedirxanî zî lehçeya kurmanckî ra çarna bi lehçeya kirdkî (kirmanckî, zazakî) ser. Kitabekê Vateyê Qijkekî yê Seîdê Kurdî 95 rîpelî yo û hetê weşanxaneyê Nûbiharî ra weşanîyayo. Kitab de des vateyî, xatime û muqedîmeyêk ca gênê.

Seîdê Nûrsî, Vateyê Qijkekî, Kurmanckî ra tadayox: Serdar Bedirxan, Weşanxaneyê Nûbiharî, Îstanbul 2010, 95 rîpelî



# Ji Barzanî serdanek dîrokî

**Firat Baran**

Barzanî piştî heşt salan, bi navê "Serokê Herêma Kurdistanê" serdana Enqerê kir. Daxuyaniyên fermî didin zanîn ku herdu alî jî ji vê serdanê memnûn û dilxweş in.

Baş e, lê çima Serokê Herêma Kurdistanê yê ku hetanî doh wek "serokê eşîrê" û "potînalês" (kesên ku potînan dialêsin) dihat binavkirin, dawetî Enqerê kirin? Berî ku em bersiva vê pirsê bidin, pêwîst e em hinekî behsa têkiliyên dîrokî yên di navbera herdu aliyan de bikin.

Tirkiye bêyî ku asta siyasî û kulturî ya polîtîka dewletê bigre ber çav, ji pencera ewlekariyê nêzîkî pirsgirêka Kurd bû. Bûyerên li Başûrê Kurdistanê jî bi vî awayî girt dest, pêşketinên heyî baş nexwend, nirxandinek baş nekir. Piştî rûxandina Seddam, Tirkiye di Îraqa nû de tenê Turkmen wek aktorên sereke nas kirin, hikûmet û siyasetmedaran polîtîka Kurd bi temamî dewrî artêşê kirin. Bi ser ku li bakurê Îraqê lêgerîn û pêkhatinên Federasyona Kurd wek "xetên sor" dihat îlankirin, ne eşkere be jî, peyamên ku wê Tirkiye midaxeleyî pêkhatinek bi vî awayî bike dihat dayîn.

Ev polîtîka ji aliyê AKP a ku di 3'ê Mijdar a 2002'an de hat ser hikum jî berdewam bû. Lê ev "xetên sor" ên ku li dîwarên polîtîkaya real ketin, çilmisîn û her ku çû ji holê rabûn. Di duyemîn desthilatdariya AKP'ê ya li Tîrmeh a 2007'an de, polîtîkaya li hember Başûr dest bi guhertinê kir.

Guherîna polîtîka Tirkiyê hewa nerm kir û têkiliyên dualî dest pê kirin. Di Cotmeha borî de serdana Wezîrê Derve, Ahmet Davûtoglû, û Wezîrê Bazirganiyê, Zafer Çaglayan, ya ji bo Hewlêrê, bû nîşana naskirina Herêma Kurdistanê. Tirkiyeya ku li Hewlêrê balyozxane vekir, li herêmê bi 5 milyar Dolar asta bazirganiyê bi dest xist. Bi ser de ev hejmar encama bazirganiyek yek alî ye, ango Tirkiye bi 5 milyar Dolaran derfiroşiyê dike, lê kirîn tune.

Ji aliyê din, di pêkhatina piştî hilbijartinê de, Tirkiyeya ku dixwaze hikûmetek di bin serokatiya Alawî de çêbibe, zorê dide ku Kurd jî vê bijarê qebûl bikin. Ji ber vê, di pêvajoyek wilo zîz de serdana Barzanî xwediyê giringiyek dîrokî ye. Serdana Barzanî ya ku ji aliyê Serkomar, Serokwezîr û Wezîrê Derve ve hat pejirandin, herçiqas nîqaşên li ser sembolên wek PKK û ala Kurdî bi xwe re anîn jî, lê encamên pir baş û erênî dan.

Bi ser ku PKK xalek giring di rojeva hevdîtinan de cih digirt jî, lê di vê derbarê de encamek nû derneket. Li gora çavkaniyên Kurdan, Tirkiye "xwestiye ku Herêma Kurdistanê jî li dijî PKK'ê piştgiriyê bide operasyonek li derveyê sînor". Lê terefê Kurd ev qebûl nekiriye û di çareseriya pirsa Kurd de li ser şêwazê aştî û demokrasiyê israr kiriye.

Li ser pêvajoya damezrandina Hikûmeta Îraqê û Serokwezîrtiya Alawî jî, terefê Kurd bi kurtî gotiye ku "Li hember ti kesî pêşbîniyek me nîne, em amade ne bi her kesî re hevdîtinan bikin û em li gel in hikûmetek ku karibe herkesî temsîl bike bê damezirandin".

Peymanên ku herî zêde terefê Kurd memnûn kirin, peymanên aborî bûn. Li Hewlêrê vekirina şaxên bankên weke Îş Bank û Zîraat Bank, di navbera Stenbol-Hewlêrê de destpêkirina seferên asmanî yên balafirên Tirkiyê ji bo hêsankirina pêşketina bazirganiyê biryarên baş in. Herweha biryar hat girtin ku karmendên Tirk giraniya xwe bidin Herêma Kurdistanê û beşdariyê di bazirganiya herêmê de bikin.

Herweha hat pejirandin ku ger di meha Hezîranê de hikûmet bê damezirandin, Serokwezîr Erdogan serdana Hewlêrê bike û di merasîma vekirina balyozxaneya Tirkiyê de beşdar bibe.

# Kurd û Tirk
## Dahatûyeke geş lê metirsîdar

**Rêbiwar Kerîm Welî**



Bi kurtî ew guherîna ku di siyaseta Tirkiyê de beramber Kurdistanê çêbûye, pêk tê ji wêya ku polîtîka Tirkiyê ji dîplomasiya "Hêla Sor" guheriye siyaseta "Gav bi Gav". Bi gotineke din, Tirkiye dest ji siyaseta mercdar berdaye.

Encameke vê guherînê serdana Serokê Herêma Kurdistanê ya ji bo Tirkiyê bû û ev prose wek Wezîrê Derve yê Tirkiyê Ehmed Davûtoglu dibêje, wê berdewam be heta wiha lê tê ku serdanên karbidestên Tirk û Kurd bo hev zêde bibin û bibin karekî asayî yê rojane ku êdî pêwîst nake bibin nûçe! Davûtoglu herwiha ragihand ku di demeke pir kurt de wê hem serokê Tirkiyê û hem serokwezîrê wê serdana Hewlêrê bikin.

Nêzîkbûna Kurd û Tirkan û ew pakêta stratejîk ku li Enqerê û li kêleka civîna çapemeniyê ya Serokê Herêma Kurdistanê û Wezîrê Derve yê Tirkiyê hat ragihandin, nîşaneke ji bo bihêzbûna destê Kurdan di dahatûyê de û di heman demê de bihêzkirina pêgeha stratejîk a Tirkiyê ye li Kurdistaneke dewlemend bi petrol û hesinên xwezayî ku ne tenê dikare pêdiviyên Tirkiyê di warê enejiyê de dabîn bike, lê herwiha bi rêya Tirkiyê dikare beşa herî zêde ya pêwîstiyên welatên Ewrûpa jî dabîn bike.

Hêla tirênê ji Stenbolê heta Bexdayê ku di Hewlêrê re derbas dibe, destpêkirina geştên "Turkish Airlines" bo Hewlêrê, vekirina şaxê sereke yê du bankên bihêz ên weke "Iş Bankasi" û "Zîraat Bankasi" li Herêma Kurdistanê, ji hemuyan giringtir jî întegerasiyona aborî û bazirganî û girêdana hevpişkiya stratejîk di warê enerjiyê de "ku mebest jê gaza xwezayî û petrol e", mizgînî û nîşanên dahatûyeke geş in ji bo Herêma Kurdistanê.

Helbet ev ne tevahiya pêngavên ku di vî warî de tên avêtin in, ji ber tê çaverêkirin ku du deriyên sînorî yên din ligel Herêma Kurdistanê bên vekirin û navçeyeke bazirganiya azad li ser sînor îsal bê vekirin, ku wê bibin bingeha dubare geşbûna jêrxaneya Herêma Kurdistanê ji aliyekî û bilindkirina asta jiyana Kurdên Bakûr.

Ev dide nîşandan ku siyaseta Tirkiyê derbarê Kurdan ji 1991'an heta 2003'an ku pêk dihat ji wêya Kurd wek alavekê ji bo berjewendiyên ewlekariyê yên Tirkiyê bên bikaranîn, niha piyê xwe avêtiye qonaxa hevbeşiya stratejîka demdirêj.

Ev qonaxa nû ku Kurd û Tirk dixwazin destpê bikin qonaxeke dijwar û pir asteng û kosp e. Ev vebûna han hevdem e ligel zêdebûna kiryarên çekdarî yên PKK'ê ji aliyekî ve û daketina asta peywendiyên Tirkiye û Îsraîlê ji aliyê din ve. Ji bilî wê yekê ku PKK baş dizane ku Tirkiye qet daxwaz ji Barzanî nake ku ew hevkariya wan ji bo êrîşên çekdarî yên ser PKK'ê bike, ji ber her pevçûnek di navbera Kurdan bi xwe de, aramiya Herêma Kurdistanê têk dide û berjewendiyên aborî û planên demdirêj ên Tirkiyê li navçeyê hildiweşîne.

Loma niha ji bilî ku Kurd bi xwe ne amade ne şerê hevdu bikin, Tirkiyê jî daxwazeke bi vî rengî nake, ji ber ne aramiya Herêma Kurdistanê ne wek salên 90'an e ku Tirkiyê tiştekî wenda neke. Lewra Tirkiyê ji Kurdan dixwaze PKK'ê zeft bikin, lê ne ji holê rakin.

Lê mixabin hê PKK'ê di wê fobiya berê de dijî û berî çend rojan ji serdana Barzanî ya Tirkiyê, li Îskenderûnê şeş leşkerên Tirkiyê kuştin ku du ji wan Kurd bûn! Hevdem BDP piştî hevdîtina wan ligel Barzanî, piştevaniya axaftinên Barzanî derbarê vebûna demokratîk li Tirkiyê nekir û ragihand ku ev tenê nerîna Barzanî ye û ew pêdagir in li ser dijayetîkirina vebûna demokratîk a Hikûmeta Tirkiyê!

Ji aliyekî din ve, daketina asta peywendiyên siyasî û serbazî yên Tirkiye û Îsraîlê ji bo Kurdan nîşana xêrê ye. Ev demeke dirêj e ku Îsraîl û lobiya Yahûdî li cîhanê wek Dewleta Tirk kar ji bo binpêkirina Pirsa Kurd li ser asta civaka navdewletî dikin. Îsraîl hemû çek û teknolojiya ku dijî Kurdên Tirkiyê tê bikaranîn, difiroşe Tirkiyê.

Loma zivirîna Tirkiyê li navçeyê û geşbûna vê dostanî û hevpişkiyê, ne tenê diltengiya Îranê bi dû de tê ku li gor Tirkiyê ti pişkeke ewqasî mezin ji aboriya Herêma Kurdistanê bidest nexistiye, lê Îsraîl jî tê ser.

Qonaxeke pir nazik û hestiyar çaverêya me dike ku divê ji niha ve em hemû jê haydar bin û bizanin ku dibe herêma me di dahatûyê de bibe meydana zindîkirina milmilane û hevrikiya welatên navçeyê ligel Îsraîlê.

# Xewnên Erdogan

**MISTEFA ŞEFÎQ EDILBI**



Erdogan li pey xewnên Seddam Hisên û EhmedîNejad digere

Êrişên Îsraîl bo ser kerwanê gemiyên ku alîkarî dibirin Xezzeyê, careke din eşkere kir ku aştî li Rojhilata Navîn ne karekî hêsan e. Her hêzek bixwaze li Rojhilata Navîn bibe hêzeke bi bandor yan jî li hember deshilata Rojava û bi taybet ya Amerîkayê raweste, mesela Filistîn û Îsraîl ji xwe re dike sembol û di bin navê parastina xelkê Filistîn de, dixwaze bigihe xewnên xwe.

Li Çaxên Navîn her hêzeke xwest li Rojhilata Navîn bibe deshilat, Îslam ji xwe re kirin rêber, di bin ala Îslamê de, bi navê şerê di rêya xwedê de gelên Musilman li dora xwe komkirin û her kesê li hemberî wan disekinîn, kirin kafîr û ji holê rakirin. Lê îro em hemû dibînin ku ev şerên pîrozên ji bona xweda hatin kirin ti armancên wanên pîroz û xwedayî tune bûn, tenê ji bona ferehkirina deshilata netewî, dîn kirine sembol û tenê bi vê rê karîn serkevin.

Îro jî heman rewş dubare dibe, lê ev car ne tenê Îslam belkî pirsgirêka Filistînê jî dikin sembola berxwedanê û serxistina armancên netewî. Seddam Hisên û partiya Sosyalista Baas, piştî dîtin ku êdî modela Sosyalîzmê nema bandora wê dimîne, xwestin Îslam, Filistîn û Şovenîzma netewa Erebî ji xwe re bike pişt û hukmê dewleta Erebî-Îslamî carek din bizivirîne Rojhilata Navîn. Xumeynî jî xwest li bin navê Şoreşa Îslamê, serdestiya Împratoriya Farisan bizîvirîne, lê paşî ku ev xwestek bi hişkî hat pêşwazîkirin, ne Rojhilata Sosiyalîst ne jî Cîhana Îslamê destek nekir, bi heşt sal şerê Îran-Îraqê ev xewn vala derket. Îro em dibînin ku rayedarên Îranê bi taybet EhmedîNejad hêsiran ji bona xelkê Filistînê dibarîne û divê Îsraîl nemîne. Çarenivîsa Seddam Hisên diyar bû û weke dixuyê wê çarenivîsa EhmedîNejad ji ya Seddam Hisên ne baştir be.

Tevî van rastiyan jî, îro rayedarên Tirk bi taybet deshilata AKP'ê dixwaze bi heman lojîkê Seddam Hisên û EhmedîNejad, xewnên zivirandina Împratoriya Osmaniyan bi cih bînin. Lê Erdogan û AKP'e hîn bi rengekî ziraftir kar dikin. Erdogan dixwaze hizra Panturkîzma Toranî tevlî hizra radîkalîzma Îslamî bike û bi piştevaniya Şovenîzma Erebî ku Filistîn ji xwe re kirine sembol, bigihe vê armancê.

Ger ku mirov li naveroka van hersê rejîmên Îraqa Seddam Hisên, Îrana EhemîNejad û Tirkiyeya Erdogan binere, mirov wê bibîne ku di koka xwe de gelek cudabûn di navbera wan de tune, hersê rejîm jî di nava xwe de ne demokratîk in, zordestî armanca wan a sereke ye û ji bona xurtkirina deshilata netewî kardikin, lewma ew dijî hemû xebatên azadîxwazin, lê hersê jî li gelê Filistînê xwedî derdikevin li hember cîhanê bi rûyê azadîxwazî derdikevin.

Li vir em dipirsin gelo mûmkîne ew xewnên ku Seddam Hisên û EhmedîNejad ne gîhanê, ji Erdogan re cibicî bibin? Gelo mûmkîne Rojava ya ku 100 sale ji bona serdestiya xwe li Rojhilata Navîn şer dike, vê heremê li ser sifreyeke zêrîn pêşkeşî Erdogan bike? Bi rastî xewnek xweşe, lê min nebawere ew xewn ewqas hêsan cîbicî bibe.

# Evdoyê Keçel û Ala Kurdî



## Xaltîka Fatê

**Silav xaltîka Fatê**
*Navê min Evdila ye, lê carna ji min re dibêjin Evdoyê Keçel jî. Ji ber ku di zaroktîya min de çêlekê serê min alastibû, pirça serê min hew derket û heta îro jî dernakeve.*
*Bi kurt û Kurmancî pirsa min ev e xaltîka Fatê:*
*Başçawîşên hikûmeta Erdogan serok Barzanî dawetî Tirkiyê kirin û gotin "were çayek me vexwe kaka". Ê helbet serok Barzanî jî qebûl kir û hat Tirkiyê, çay û qehwe bi wan re vexwar. Lê di preskonferansê de Tirkoleran ala Kurdistanê û Iraqê daneliqandin, tenê ala Tirkan hebû. Gelo Tirkan çima ev bêhurmetî kir? Li benda bersima te me ha, bilezîne.....*
***Evdoyê Keçel** - Amed*

**Bersiva xaltîka Fatê**
Kuro keçelo, serperitîyo, xwedênehişto....
Law keçelekî mîna te çima rabe serê xwe bi hatina Barzanî û ala Kurdî re bêşîne kurê kerê! Serê keçel çi ji serdana Barzanî û çay û qewmê fêhm dike ewladim?
Law Evdoyê Keçel, Tirkan tifa xwe alast û serok Barzanî dawetî Tirkiyê kir, mecbûr man kesên ku wek "serokeşîr" bi nav dikirin, dawetî koçk û serayên xwe bikin, destên wan bihejînin û ji wan re bêjin **"xoşgeldin kaka"**.
Tirkan hêvî dikir ku serok Barzanî di axavtina xwe de PKK wek terorîst êlan bike û Kurdên bakur û başûr bera hev din. Lê serok Barzanî nehat lîztika wan, negot "PKK terorîst e" û çareserîya pirsa Kurd di rêyên aştî û demokrasîyê de dît.
Te go Tirkan di preskonferansê de ala Kurdî daneliqandin?
Law ma ev jî pirs e ya Evdoyê Keçel? Kuro hey kerê min heywanê xwedê, serok Barzanî ji xwe sembola Kurd û Kurdistanê ye, ha ala Kurdî hat daleqandin, ha serok Barzanî wek serokê Kurdistanê li wir sekinî, çi ferq heye kero!? Ê ji xwe Wezîrê Derve Ahmet Davûtoglû li Hewlêrê têra xwe di bin ala Kurdî û wêneyê Mistefa Barzanî de rûniştibû, ma ne bes e baba, wî! Ma çavê te lê ye Tirk di malên xwe de jî ala Kurdî daleqînin **oxlim, waweylê! Hêdî hêdî kaka, "Piçik bi piçik meriv xwe digihîne ber kûçik"** ha Evdooooooo!





Qado Şêrîn

## Dêmek diçim cehnemê!

Ji roja min hevpeyvîna bi xwedê jê razî Mele Fayiq re xwendiye, hema hema xew bi çavên min nebûye, ji quzgezk û gumgumokan pêve nayên xewnên min.
"Ji sedî 90 zilamê Kurd diçe cehnimê" nava mêran qetand û kêfa jinan anî. Jixwe mêro xwe kir abûqatê keçikên çardeh salî jî: ''Bila biryara hezkirinê di destê keçkê de be, bila hevalê xwe bi xwe hilbijêre''. Di vê de mafdar e, bixwe naxwazim xuşka min piştî du rojan bê sotin û bi çavsor û deyûzan re bijî.
Dêmek cehnemî me, çimkî mêr im, ezê bi bihuşt, mey û horiyên wê şa nebim, weyla li mala bavê siwaran be, ewqas guman, hêvî, xewn û xêrên min bi avê de çûn! Ne ez bim û ne xewnên min ên gulgulî bin.
Mele ji xwedê bitirse, fitûkê bibîne, ma me bêndera te qulaptiye, me sînorê te ajotiye, yan me motka bin mirîşka te diziye te em şandin cehnemê! Ê xuyaye tu nikarî bi kerê dibezî kurtên, an jî tenê balonek bû te teqand. Hêviya me bêkesan ji xwedayê dilovan ku guhê xwe bi şimê bigre û li yên wek te guhdarî neke.
Seydayê mele Fayiq, ma tu bûyî Zorba yê Níkos Kazantzakis? Zorba jî berevanî di ber hemû mêrên cîhanê de dikir dema dilê jinan nedihişt. Lê tu, bê guman te dilê jinekê hiştiye, dêmek tu jî li gor bîr û boçûnên Zorba cehnemî ye.
Ez bixwe nifiran li te nakim, ne jî sixêf û dijûnan bi mailan ji te re dişînim. Lê hema xwedê dîtin û boçûnên Zorba wek şaşikan li serê te bigerîne seyda!. Jixwe ferq û cudahiya di navbera te û Zorba de ew e ku tu tenê bi helwestan pişta jinan digrî, lê ya Zorba bi helwest û kirinê bû, wî dilê jinan nedihişt, wî digot nabe livîna jinan sar bimîne, gerek tim germ be, nabe jin bi tenê razê. Jixwe yê dilê jinan bihêle cehnemî ye û ker vedigerin dunyaya ezmûnan.
Li dawî mih bi lingê xwe û bizin bi lingê xwe. Mirov, mirîşk, qaz û qazîmazî bi lingên xwe.

# Xaçepirs

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | | ■ | | |
| 2 | | | | ■ | | | | ■ | | | | |
| 3 | | | | | | | | | ■ | | ■ | |
| 4 | | ■ | | | ■ | | ■ | | | | | |
| 5 | | | | | | | | | ■ | | | |
| 6 | | | ■ | | | | | ■ | | | | |
| 7 | | | | | | | | | | ■ | | ■ |
| 8 | | ■ | | | | | ■ | | | | | |

**Çeperast**
1-Malperek Kurdî – Rîtina mirovan (berepaş). 2- Bi olê ve girêdayî – Mexlûqatên ku nayên dîtin (berepaş) – Xwarina li ber eraqê. 3- Teqawitbûyî, ji kar ketî (berepaş). 4- Bi Erebî gotina "na" (berepaş) – Çîroka dirêj, beşek ji edebiyatê. 5- Rê û rêbazên pêşwaziyên fermî – Bi Erebî tevger, helwest, rabûn û rûniştin. 6- Kurtenivîsa Turkiye – Roja yekem a nîşandana fîlmekî – Ne germ e, serma ye (berepaş). 7- Hormonek. 8- Nehîye, bajarok (berepaş) – Meha çarem.

**Serejêr**
1-Welatê Loran. 2- Gotina telefonê (berepaş) – Xak, zevî. 3- Maddeyek sotemenîyê – Notayek. 4- Gundekî Kurdên Ermenistanê. 5- Kongra Netewî ya Kurdistanê – Wate, naverok. 6- Girêka kor, girêdana tevlihev. 7- Dermanekî cilşûştinê – Pêlav û sola heywanan. 8- Stirîyên darê – Rojek. 9- Pronavê duyem – Cephe, beş. 10- Qemer, reşane. 11- Bi lez, ecele (berepaş) – Bajarekî Tirkiyê. 12- Navekî mêran, mêrxas.

# Mêşên kunek

Kurikê 10 salî mêşan dikuje. Rakêta mêjan di dest de û dide dû mêşan, wan dikuje û sebra xwe tîne.
Lawik carekê dibîne wa du mêş di ser hev de ne. Meraq dike, dike nake tê dernaxe bê sedema lihevsiwarhatina mêşan çi ye.
Lawik radib ji dêya xwe dipirse:
„Dayê, ma mêşên nêr hene?"
Dêya wî dibêje:"Erê kurê min, mêşên nêr hene".
Dayika lawik şikê ji tiştekî nake û pirsa kurê xwe normal dibîne.
Piştre kurik cardin dipirse:
„Dayê, ma mêşên mê jî hene?"
Jinik îcar tê digihê, zane ku mesele hat ser seksê. Jinik dibê:
„Na kurê min, mêşên mê tunene".
Lawik hema rakêta di destê xwe de li herdu mêşan dixe û dibê:
„Min di we kirino, naxwe hûn qûnek in newlo" û wan dikuje.



# 35 hezar Dolar li "Derya Evînê" çûn

Hunermenda Bakurê Kurdistanê, Melek Rojhat ev demeke li Stenbol û Edenê bi amadekirina albûma xwe ya nû ve mijûl e. Albûm ji 12 stranan pêk tê û navê wê "Derya Evînê" ye: "Ji ber ku piraniya stranên vê albûma min li ser evînê ne, min navê wê kir "Derya Evînê."

Melek Rojhat ji bo Rûdawê ragihand ku albûma wê ji 12 stranan pêk tê û wê di demeke kurt de bê belavkirin. Albûm ji aliyê şîrketên Aydin Music li Stenbol û Vîn Tv li Başûrê Kurdistanê tê belavkirin. Mesrefa vê albumê ku nêzîka 35 hezar Dolar bû.

Ji bilî gotina stranan, Melek dema vala werzişê jî dike: "Hemû kes dixwaze laşê wê xweşik û nazik be, ez jî her wiha me. Hê temenê min biçûk e û naxwazim qelew bibim."

# Keçên Kurd fanatîkên taximên Spanya û Îtalya ne




Alîgireke taximê Îtaliya

Îlham Ebdulla Silêmanî

Li gel nêzîkbûna yariyên kûpa cîhanê ya gokapê ya sala 2010'an li Başûrê Efrîqa, gelek keçên Kurd wê bibin alîgirên taximên ku yarîzanên xweşik lixwe digrin. Ev keçên ku çavên xwe dikin pîvan, ji taximên Spanya û Îtalya hez dikin.

Berevajî kurên Kurd ku bêtiriya wan fanatîkên Brazil û Argentina ne, keç piştgiriya Îtalya û Spanya dikin. Hin keç dibêjin ku zêde kêfa wan ji werzişê re nayê, lê ew hertim berê xwe didin yariyên Îtalya û Spanya "Ji ber yarîzanên wan pir xweşik in." Ew herwiha dibêjin ku ne tenê di lîstikan de, lê di bêtiriya warên jiyanê de bandora xweşikiyê heye.

Lê hin pisporên sporê dibêjin ku pêwîste lîstikvan yariyeke baş bike, nexwe çiqas xweşik û xwedî bejin û baleke lihevhatî jî be, bê sûd e.

# Noemi Lenoir hawar dike



Di rojên borî de medya cîhanî behsa wê yekê kirin ku pêşkêşkara modeya cilûbergan a Fransî, Noemi Lenoir, hewla xwe kuştinê da, lê pizîşk karîn wê ji mirinê rizgar bikin.

Noemi Lenoir, di hewla xwekuştinê de kokteleke şerab û tabletên xewê bikar anî bû, paşî wê tirombêla xwe ajot û çû nav daristaneke nêzîk mala xwe ya li Parîs, lê ji ber ku koktela wê vexwarî ne gelek bû, pizîk karîn wê ji mirinê rizgar bikim.

Hin aliyan gotin ku ev hewla Noemi ji ber wê yekê ye ku peywendiya wê bi hevalê wê yê lîstikvan, Claude Makelele, re tevlihev e. Ew herwiha dibêjin ku ev karê Noemi Lenoir, mîna bangeke hewarê ye ji bo alîkarîkirin û derxistina wê ji rewşa ew tê de ye.

# Charlie Sheen tê girtin

Piştî ku hevjîna wî gilî lê kir, stêrkê Holywoodê, Charlie Sheen, yê 44 salî, ji aliyê polîsên bajarê Aspen yê girêdayî Eyaleta Kolorado ve hat binçav kirin.

Hevjîna Charlie Sheen, Bruckmüller, ya 32 salî ji polîsan re diyar kir ku piştî dinavbera wan de problem derketin û wê daxwaza cudabûnê kir, hevjînê wê gefa serjêkirinê li wê xwariye, wê herwiha got ku sedemeke din a vê gefxwarinê ewe ku wê daxwaza mafê xwedîkirina herdu zarokan xwe kiriye.

Charlie Sheen jî piştî ku bi kefaleteke diravî hat berdan, ew yek piştrast kir ku di navbera wan de problem hene, lê wî got sedem ewe ku jina wî pir şerabê vedixwe û alkholîk bûye.



Charlie Sheen û Hevjîna wî